| | | | |
|---|---|---|---|
| lêvsor | kırmızı dudaklı | qui a des lèvres naturellement rouges | who has naturally red lips |
| lêvdirêj | uzun dudaklı | qui a des lèvres longues | who has long lips |
| lêvşor, lêvdaliqî | sarkık dudaklı | qui a des lèvres pendantes | one who has drooping lips |
| lêvfaq, lêvkem | tavşan dudaklı | bec-de-lièvre | hare-lipped |
| lêvlerzok | titrek dudaklı | qui a des lèvres tremblantes | who has trembling lips |
| lêvkurt, lêvqut | dudaklarından biri daha kısa olan | qui a une lèvre plus courte que l'autre | one who has one lip shorter than the other |
| lêvlemtû, lêvlatan | zenci dudaklı, şişkin dudaklı | qui a des lèvres très grosses, négroîdes | thick-lipped (like west Africans) |
| lêvqeşavî: ziwa û terikî | dudakları kuru ve çatlak olan | qui a des lèvres sèches et craquelées (gercées) | one who has dry and chapped lips |
| lêvziwa | kuru dudaklı | qui a des lèvres sèches | dry-lipped |
| lêvçimçimî | büğümlü dudak | qui a des lèvres ondulées | curved-lips |
| lêvgilor | kalın ve etli dudak | qui a des lèvres grosses et charnues | who has thick, meaty lips |
| lêvşilor, lêvter, lêvşil | ıslak dudaklı | qui a des lèvres humides | who has wet lips |
| lêvgilêz, lêvgilîsk | dudakları salyalı | qui a des lèvres qui bavent | who has dribbling lips |
| lêvterikî | çatlak dudaklı | qui a des lèvres fendues | who has split lips |
| lêvpehn | geniş dudaklı | qui a de larges lèvres | who has wide lips |
| lêvxwençe | gonca dudaklı | qui a des lèvres en forme de bouton de rose | who has rose bud lips |
| **Îdyom** | | | |
| lêvşekir, lêvşîrîn | şeker dudaklı | poésie: qui a des lèvres délicieuses | sweet-lipped, sugar-lipped (poetic) |
| lêvşor, lêvdaliqî | dudağını büzen, asık suratlı | qui fait la gueule | sulky lips |

# Bergûz an şel û şepik li Behdînan

**Amadekar : Husên BINAVÎ**

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| bergûz | tiftiften yapılan takım elbise | complet traditionnel kurde d'homme | traditional Kurdish men's costume |
| **merez:** mûyê çûran | tiftik | mohair | mohair |
| çûr | tiftik keçisi, Ankara keçisi | chèvre angora | Angora goat |
| hiriya serbisk | uzun telli, en iyi kaliteli yün | laine longue de première qualité | first grade long-fibre raw wool |
| binşe | düşük kaliteli, tarak artığı yün | laine de qualité médiocre, utilisée pour faire des cordes, etc. | medium grade long-fibre raw wool, used for rope making |
| şepik, şapik | geleneksel kürt erkek kıyafetinde ceket | veste du complet traditionnel kurde d'homme | jacket of traditional Kurdish men's costume |
| şel, şal | pantalon | pantalon traditionnel | traditional trousers |
| êlek | yelek | gilet traditionnel kurde | traditional Kurdish waist-coat |
| êşlek, îşlik | gömlek | chemise | shirt |
| **şûtik:** pişt, piştîne | bele bağlanan kumaştan erkek kemeri | ceinture de tissu pour homme | man's cummerbund |
| şal | el örgüsü bel bağı | ceinture tissée de femme | woven women's belt |
| dersok, cemedanî, kefî, axabanî, axbanî | kefiye | kéffieh, coiffure traditionnelle kurde | keffiah, traditional Kurdish head wear |
| kum, kulav | külah | bonnet d'homme en feutre | man's conical felt hat |
| saq | 1) çorabın bacağı örten kısmı; 2) tozluk | 1) partie supérieure de la chaussette; 2) guêtre | 1) sock uppers 2) gaiters |
| reşik | yünden ve kırılan örülen çarık | sandale en laine et poils tissés pour l'hiver | winter sandals of woven wool and hair fibers |
| kalik | altı lastik olan çarık | chaussure primitive dont la semelle est en caouchouc ou en peau et le dessus en laine tissée | rough shoes with rubber or hide sole and woven woollen uppers |
| **kalika xaveryî:** kalika ku binê wê qumaş e: kêmkalîte ye | altı kumaştan olan düşük kaliteli çarık | "kalik" dont le bas est en tissu | low quality shoes with cloth uppers |

**bergûzê bekirbegî**: textê wan spî ye, xêzêt (xîçêt) zirav yêt şîn û sor lê ne
**bergûzê tiyaryanî:** textê wan spî ye, xîçêt zirav yêt sorî lê ne
**bergûzê badayî:** xîç an malikêt pehn yêt spî û gewir lê ne
**bergûzê reşaxayî:** şelwarê wî mor (binefşî an xemir) e, yekreng e, şepikê bergûz badayî ye. Ji hemiyan bi qîmettir in
**bergûzê piştpez:** gewreke tarî û êkreng e (qehweyiya tarî)
**bergûzê xezalî:** gewreke vebûyî û êkreng e, wekî rengê xezalan (qehweyiya vekirî)
**bergûzê keskoyî:** textê wan kesk e û xîçên şîn lê ne; an textê wan şîn e û xîçên kesk lê ne
**bergûzê kesnedîtî:** textê wan mor e; moreke tarî ye, êkreng e. Li Hekariya kesnedîtî: textê wan kesk e, xîçêt wan binefşî, şîn, sor û zer in
**kerranî:** textê wan spî ye, xîçêt gewir lê ne xîçêt şîn di nav de ne
**şernexî:** neqşandî bi gelekreng in, spî û xêzêt reş di nav de ne
**semayî:** şînê vekirî ye
**texte binefşî:** êkreng û mor (binefşî) ye
**sorcûn:** hemî reng têne têkel kirin
**qer:** hemî ji hiriya reş e


Badayî


Piştpez


Kerranî


Xezalî


Semayî


Texte Binefşî

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
© INSTITUT KURDE DE PARIS
106, rue La Fayette, 75010 Paris - France
*www.institutkurde.org*
*Directeur de la publication :* Reşo ZÎLAN
*Réalisation :* S. ILITCH & M. HASSAN

## LI ME BIBORIN !

Mixabin di hejmara 24an ya ***Kurmancî*** de çend şaşî çêbûne. Em pêdivî dibînin, ku wan çewtî û şaşiyan li jêrê bidin xuya kirin û rast kirin; Di gel vê serrastkirinê, bi dilekî xemgîn, ji hevalên xwe yên kar û herweha ji xwendevanên ***Kurmancî*** doza lêborînê dikin. Hêvîdar in, ku ew van kêmasiyên me bidin bin piyan.

Ev in ew şaşî:

1. Di navên beşdarên civînê de 2 nav, navên kek Veysî Zeydanli û kek Memo Yetkin, li lîsteyê hatine zêde kirin. Lê navê kek Xosro Abdullahî hatiye ji bîr kirin.
2. Di xebata ***Termên matematîkê*** de amadekar 2 kes bûn. Ji wan navê kek Behroz Şucaî nehatiye nivîsîn. Herweha navê kek Behroz di ***Termên komputerê*** de ji şaş hatiye nivîsîn.
3. ***Çend peyvên kêmnas ji milê Hekariya*** ne ji aliyê kek Michael Chyet, lê ji aliyê kek Rojan Hazim ve hatibû amade kirin. Herwisan navê kek Rojan hem di lîsteya beşdaran de û hem jî wek amadekarê ***Termên rêzdariyê*** bi şaşî wek Rojen hatiye nivîsîn.

***Kurmancî***

hejmar 26 Payîz 1999

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya Kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*

*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

*Ehmedê Xanî*
(Sedsala XVII)

## Civîna Parîsê

Civîna 26emîn ya ***Kurmancî*** di navbera rojên 25-30/10 1999an de li Marly-le-Roi, nêzîkî Parîsê çêbû.

Beşdarên civînê li ser îdyomên kurdî, bergûz an şel û şepik li Bahdînan, devoka Qerejdaxê, xwarinên Serhedê, cureyên endamên laşê mirovan û îdyomên jê çêkirî, termên komputerê û li ser peyvên kurdî-îranî di zimanên cîran de xebitîn.

Di vê civînê de Husên Bênavî (Berwarîbala), Joyce Blau (Parîs), Michael Chayet (Waşington), Elîşêr (Wan), Rojan Hazim (Hekarî), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Emîn Narozî (Batman), Kendal Nezan (Diyarbekir), Selam Nûman (Qamişlo), Zinar Soran (Dêrik), Behroz Şucaî (Kotol) û Reşo Zîlan (Agirî) beşdar bûn.

Encamên cîvînê di vê hejmara ***Kurmancî*** de tên belav kirin.

# Peyvên kurdî-îranî di zimanên cîran de

## I. DI ZIMANÊ TIRKÎ DE

**Amadekar : Reşo ZÎLAN**
**Behroz ŞUCAÎ**

Zimanê kurdî, di nav zimanên hindoewropî de, ji koma zimanên îranî ye. Mebest ji zimanên îranî, binavkirina hemû zimanên xwîşk û bira yên ku di nav vê komê de ne. Ev kom ji van zimanên ku îro têne axaftin, wek: farsî, kurdî, belûçî, derî, tacikî, osetî, tatî, talişî, peştûyî û hwd pêk têt. Gava ku mirov dibêje zimanê îranî, ev nayê wê maneyê ku mebest farsî ye. Li bervajiyê vê, hemû ew ziman in, ku îro tên peyvîn yan jî berê dihatin axaftin lê niha mirî ne. Ango navê wê komê jê tête qest kirin.

Di zimanê kurdî de peyv hene, ku bi tenê kurdî ne. Ango di nav gelên îranîziman de ew peyv bi tenê li ba kurdan hene. Wek peyvên ***kur, keç, zarok*** *(=zar, zaro, mindal)*, ***reş, rondik*** (=*hêsir, stêr, histêrk, firmêsk*). Lê hin peyv jî hene, ku tevî ku di zimanê kurdî de hene, di hemû zimanên din yên îranî de jî hene, ku yan her bi `eynî rengî yan jî hinek caran piçekî cihê û bi aksaneke din têne bi lêv kirin. Wek ***dest, yek, bazar, gul, dûrbîn/ dûrebîn***.

Ji peyvên weha hevpişk re peyvên "*îranî*" têne gotin. Ji ber ku ew malên hemû gelên îranîziman in. Lê gava ku ji van gotinên îranî peyveke din li gor peyvsaziya kurdî hatibe afirandin, êdî ew peyveke kurdî ye. Wek dest gotineke îranî ye, lê heçî peyva destegul e, dibe kurdî. Ji ber ku di zimanên din yên îranî de peyveke bi vî rengî ku bi tenê peyveke hevedudanî be û di vê maneyê de bête bi kar anîn tune ye. Lê ew di şûna peyveke hevedudanî de, peyveke nehevedudanî ya bi îzafeyê çêkirî bi kar tînin. Herweha ev çend peyvên din in, ku li gor peyvsaziya kurdî ne :

***serbijêr*** (bi tenê peyva ***ser*** bi îranî)
***bejinûbala*** (bi tenê peyva ***bala*** bi îranî)
***dilketî*** (bi tenê peyva ***dil*** bi îranî)
***nankor*** (bi tenê peyva ***nan*** bi îranî)
***berşîr*** (bi tenê peyva ***şîr*** bi îranî)

Peyv jî hene ku ji zimanekî din yên îranî hatine û ketine kurdî, bêî ku bilêvkirina wan bête guhartin yan jî bi guhartineke piçûk, îro jî têne bi kar anîn. Wek: ***Nimayiş***, ku navdêreke lêkerî ye û ji lêkera ***nimûden*** ya farsî têt. Di kurdî de berginda vê lêkerê ***nimandin*** e û her bi maneya ***nîşandan*** û ***pêşkirinê*** de ye. Lê heçî peyva ***nimayiş*** *e*, di çend maneyan de tête bi kar anîn. *1.* ***Xwepênîşandan***, ***mîtîng*** *2.* ***Di kurdiya soranî de her bi maneya pê****şraxistin, pênîşandan, nî****şandanê***. Herweha ***newzad,*** ku ji peyvên ***now (new)*** û ***zad*** pêk hatiye. ***New/now*** ya farsî, bi kurdî ***nû*** û ***-zad*** ya farsî, bi kurdî ***–za***, ango ***nûza***. Lê eger em ji dêl ***newzad*** ya farsî bi kurdî peyva *nûza* bi kar bînin, dê maneyeke din jê derkeve. Kurd *nûza* ji bo zarokên ku nû ji diya xwe bûne û çend rojî ne, dibêjin. Lê peyva ***Newzad*** di kurdî de ji bo navê kuran tête bi kar anîn û ne di vê maneya me gotî de. Heçî di farsî de ye, ev peyv ne wek nav lê belê bi tenê di maneya *nûza* de tête bi kar anîn. Herweha wek peyvên din. ***Namzed, name, nimûne, newroz / newrûz (nûroj)*** û hwd.

Vêca gava ku em dibêjin filan bêje îranî ye yan jî kurdî ye, mebest jê ew e, ku me li jorê şerh û ronahî kiriye.

Armanca vê kurtelêkolîna me ya han ne ew e, ku em dewlemendî yan jî jarî û qelsîya zimanekî cîran raxînin pêş çavan. Bi encama jê bidestketî bixwazin bibêjin, ku zimanê me di ser gişt zimanan re ye. Ji filan yan jî bêhvan zimanî dewlemendtir e, paqijtir û zelaltir e. Ne wek wî zimanî zimanekî têkilhev e û gencîneya peyvên wî ji çend bêjeyan bêtir nîne. Ev reng helwêst û awir ne rast in. Em xwe herdem jê gellekî dûr dixin. Lê dijmin û nehezên gelê me timî bi mêjî û têgihîştineke şovenî ya bi vî rengî li zimanê me nihêrîne. Xwastine ku kurdî bikin yan zimanekî tuneyî, yan zimanekî têkilhev û yan jî zaravayek ji zaravayên pir paşdemayî yê zimanê xwe.

Divê qenc bête zanîn, ku çu zimanek nîn e ku ne dewlemend be, her qels û jar be. Her zimanek li gor xwe, li gor dînamîkên xwe dewlemend e. Eger ji dînamîkên xwe îstifade bike, dikare di her warî de her tiştî pê bîne zimên, bibêje û binivîse. Bi alîkarîya wan dînamîkan dikare rêya afirandina peyvan li ber xwe xweş bike da ku bikaribe ji xwe re term û mefhûmên pêdivî biafirîne. Bi vî awayî dikare zimanê xwe bike zimanekî nûjen, geşedarbûyî û zimanê zanistê. Ji bilî vê rêyê, rêyeke din jî heye, ku ew jî ji zimanên din bideynkirina term û mefhûmên pêdivî ye. Ev jî hîç ne ji qelsî û jarîya wî zimanî ye, heye ku mecbûrîyetek be ji mecbûrîyetên cîhana îroyîn ya her ku diçe piçûktir dibe. Serdema niha, ku serdema teknolojîyê ye, tixûb nema xwe li ber radigirin. Ziman jî hew dikarin bi tenê bi peyv û bêjeyên xwemalî xwe têr bikin. Ji wan re sifreyeke ji peyvên dereke xemilandî jî pêwîst e, da ku bikaribin bi wê çavkanîyê zorê ji astengan bibin.

Çawan ku me ji zimanên cîran peyv biribin, wisan jî wan ji me birine. Bi lêkolîneke holê em dixwazin bandora zimanekî qedexekirî, ku yek ji mezintirînê tawanên li hember mirovatîyê ye, li ser zimanekî serdest nîşan bidin. Herweha bibêjin, ku divê xwedîyên 'eslî yên van peyvan çu caran bi tirsa ku ew ji zimanê "tirkî" ne, xwe ji bikaranîna wan nedin paş.

Heçî ji bo derxistina 'esl û bineçeyên van peyvan e, me wek çavkanî pirtûk û xebatên etîmolojîk yên zanistî bi kar anîne. Me pişta xwe çu caran nedaye etîmolojîya gelêrî ku bi her awayî ji zanistê dûr e. Herwisan me di vê lêkolînê de xwastîye ku em kurdîbûna bi tenê peyvên ku îro di zimanê nivîskî yê tirkî de gellekî têne bi kar anîn destnîşan bikin. Bi tenê li ser peyvên sade yan jî hevedudanî rawestin, ku hemû perçeyên wê kurdî-îranî ne û ne ku bes perçeyek jê bi kurdî-îranî lê yê din bi tirkî be.

Piştî ku me lêkolîna xwe ya li ser zimanê tirkî û zimanên din yên cîran jî kuta kir, em ê vêca dest bi berevajîyê wê bikin. Ango, peyvên ku ji zimanên cîran ketine kurdî.

Çend kurte :

***far.*** = farsî
***peh.*** = pehlewî
***tr.*** = tirkî
***lat.*** = latînî
***îng.*** = înglîzî
***skr.*** = sanskrîtî
***part.*** = partî

# A

| kurdî | fransizî | ingilîzî |
|---|---|---|
| **abanoz:** abanûz, ***far:*** *abnûs,* ***lat:*** *ebenus* | ébène | ebony |
| **abara, abrah:** avrê, avro, ***far:*** *abrah,* ***tir:*** *su geçiti, kanal* | canal, aqueduc | canal, aqueduct |
| **abbaz:** avbaz, sportmenê avê, ***far****: abbaz,* ***tir:*** *su sporcusu* | sportif aquatique | aquatic sportsman, show-diver |
| **abıru:** avrû, ***far:*** *abirû* | 1) grâce, beauté; 2) honte, modeste | 1) grace, beauty; 2) shame, modesty |
| **acur:** 'ecûr, (***lat:*** *cucumis flexuosus*) | concombre russe | Russian cucumber |
| **ada:** ade, girav, ***far:*** *adek, adak* | île | island |
| **afyon:** efyon, afyon, ***far:*** *efyûn,* ***lat:*** *opium* | opium | opium |
| **afyonkeş:** efyonkêş, ***far:*** *efyûnkêş* | fumeur d'opium | opium addict |
| **aferin:** 'eferim, aferîn, ***far:*** *aferîn* | vive, bravo | bravo, well done! |
| **afsûn:** efsûn, ***far:*** *efsûn* | charme, enchantement | charm, enchantment |
| **agâh:** ageh, ***far:*** *agah/ageh,* ***peh:*** *akas* | informé, au courant | aware, informed, vigilant |
| **ahenk:** aheng, ***far:*** *aheng,* ***peh:*** *aheng* | harmonie | harmony |
| **ahır:** axur/axir, ***far:*** *axur,* ***peh:*** *axwer* | écurie | stable |
| **ahüvah:** ax û wax | lamentation | lament |
| **Ajda:** bi kurdî ji peyva ***aj*** (bi tirkî ango *filiz, fidan, fide* ku hemû jî zimanê yûnanî ne) û lêkera ***aj dan****ê: filizlenmek.* Bi kurdî navê keçan e. (Tirkan jî ew her ji bo navê keçan danîne.) | jeune plante; prénom de fille | young shoot; a girl's name |
| **al:** ale, sorê vekirî (wek *sorê ale*), ***far:*** *al/ala* | vermillon, écarlate | vermillion, scarlet |
| **alev:** alav, ***far:*** *alav, alave, elav, eluv,* ***tr:*** *yalım, yalaz* | flamme | flame |
| **alıç:** alûçe, alûc, 'alûc, ***far:*** *alûçe,* ***lat:*** *crataegus* | prune verte et aigre | green, sour plum |
| **ambar:** 'embar, 'inbar, ***peh:*** *henbar/enbar,* ***far:*** *enbar* | dépôt, entrepôt | store, storehouse |
| **amaç:** armanc/amanc, ***far:*** *amac* | but, cible | target, aim |

| | | |
|---|---|---|
| **amade:** amade (=hazir), ***far:*** *amade* | prêt, disponible | ready |
| **aptes:** avdest, ***far:*** *abdest* | ablution | ritual ablution |
| **apteshane:** avdestxane, destavxane | toilettes | toilets |
| **arzu:** arizû, ***far:*** *arizû*, ***peh*** *: arzok* | désir | desire |
| **asayiş:** asayîş, ***far:*** *asayiş*, ***peh:*** *asayişn* | ordre public | public order |
| **astar:** astar, ***far:*** *aster* | doublure | lining |
| **aş:** aş (xwarin, xurek), ***far*** *: aş*, ***peh:*** *aş*, ***skr:*** *âçe*, ***lat:*** *esus* | plat cuisiné | cooked dish |
| **aşhane:** aşxane, lokanta | 1) restaurant; 2) cuisine | 1) restaurant; 2) kitchen |
| **aşikâr:** eşkere/aşkira, ***far:*** *aşikar*, ***peh:*** *aşkarek* | évident, manifeste | obvious, manifest |
| **aval:** awal, 'ewal, 'ewêl | crétin, simplet | fool, simpleton, idiot |
| **avadan:** avadan (avakirî), ***far:*** *abadan* | ensemble d'outils | set of tools |
| **avare:** 'eware, ***far:*** *avare* | oisif, désoeuvré | idle, out of work |
| **avaz:** awaz, ***far:*** *avaz*, ***peh:*** *avaz* | cri, clameur | cry, clamor |
| **avize:** awîze, ***far*** *: prs rad. avîz* | chandelier | chandelier |
| **ayin:** ayîn, ***far:*** *ayîn*, ***peh:*** *advên* | cérémonie religieuse, rituel | religious service, ceremony, rite |
| **azar:** azar, ***far:*** *azar*, ***peh:*** *azar* | souffrance, douleur | suffering, pain |
| **azdırmak:** azirandin, ***far:*** *azurden* | exciter, provoquer, exacerber | to excite, to provoke, to exacerbate |

# B

| | | |
|---|---|---|
| **baba:** bav, bab, ***far:*** *baba* | père | father |
| **baca:** pace, ***far:*** *baceh* | conduit de fumée, cheminée | chimney |
| **baç:** bac, ***far:*** *bac*, ***peh:*** *vaj* | tribut, taxe, péage | tribute, taxe, toll |
| **badem:** behîv, ***far:*** *badem* | amende | almond |
| **bağ:** bax, ***far:*** *baẍ*, ***peh:*** *baẍ*, | vignoble, verger | vineyard, orchard |
| **bağçe:** baxçe, bexçe, ***far:*** *baxçe* | jardin | garden |
| **bağışlamak:** baxişandin, bexişandin, ***far:*** *bexşîden* | pardonner | to forgive |
| **bahane:** behane, ***far:*** *behane*, ***peh:*** *vehanek, behanek* | prétexte | pretext, excuse |
| **bahar:** bihar, ***far:*** *behar*, ***peh:*** *vehar* | printemps | spring |
| **bahçıvan:** baxçevan, ***far:*** *baxçeban* | jardinier | gardener |
| **bahşiş:** bexşîş, ***far:*** *bexşiş* | pourboire | tip, baksheesh |
| **baht:** bext, ***far:*** *bext*, ***peh:*** *bext* | fortune, chance | fortune, chance, luck |
| **bahtiyar:** bextiyar, ***far:*** *bextiyar* | fortuné, heureux | fortunate, happy |
| **balaban:** balaban, ***far:*** *balaban* | personne robuste | husky, robust person |
| **barut:** barûd, ***far:*** *barût* | poudre | gunpowder |
| **batman:** batman, ritil, ***far:*** *patmen/ batman* | mesure de poids | a unit of weight |
| **bazubent:** bazbend, pazûbend, ***far:*** *bazûbend* | brassard, talisman porté au bras | armband |
| **bebek:** bebek, bebe, ***far:*** *bebek* | bébé | baby |
| **bedbaht:** bedbext, ***far:*** *bedbext*, ***peh:*** *vetbext* | malheureux, infortuné | unlucky, unfortunate |
| **bedbin:** bedbîn, ***far:*** *bedbîn* | pessimiste | pessimist |
| **bent:** bend, ***far:*** *bend*, ***peh:*** *bend* | 1) attache, cordon; 2) barrière, barrage | 1) link, bond, tie; 2) barrier, dam |
| **belge:** belge (ji belg/pelg), ***far:*** *berge* | document | document |
| **ben:** ben, şanik, şan, şahnik, xal, ***far*** *: ben* | grain de beauté | beauty spot |
| **berhudar:** berxudar, ***far:*** *berxurdar* | heureux, prospère | happy, prosperous, successful |
| **beste:** beste, ***far:*** *beste* | composition vocale | vocal composition |
| **bestekâr:** bestekar | compositeur | composer |
| **bet:** bed, ***far:*** *bed*, ***peh:*** *vet* | mauvais | bad |
| beg **bey:** beg, ***far:*** *bêk, beg*, ***part:*** *bex¨ (xwedê)*, ***peh:*** *beg* | seigneur, monsieur | lord,sir; title put after the names of servants and petty officials |
| **beyaban:** biyaban, ***far:*** *biyaban*, ***peh:*** *viyapan* | désert | desert, wilderness |
| **beygir:** bargîr, bergîr | cheval de trait | packhorse |
| **bezirgân:** bazirgan, ***far:*** *bazergan* | marchand | merchant |
| **bezim:** bezm, ***far:*** *bezm* | assemblée conviviale, banquet, fête | banquet, convivial meeting |
| **bibi:** bîbî(met), ***far:*** *bîbî û bi maneya dapîr e* | tante paternelle | paternal aunt |
| **biz:** bîz, bîze, dirêş | alène | awl |
| **biçare:** bêçare, ***far:*** *bîçare* | sans espoir, sans remède | without hope, without remedy |
| **bigünah:** bêguneh, ***far:*** *bîgunah* | sans péché, innocent | guiltless, innocent |
| **bikes:** bêkes, ***far:*** *bîkes* | seul, sans ami | lonely, friendless |
| **birader:** birader, ***far:*** *berader* | 1) frère; 2) ami | 1) brother; 2) friend |
| **bizar:** bêzar, ***far:*** *bîzar* | exténué | weary, exhausted |
| **boran:** boran (*berf û boran*), ***far:*** boran | tempête de neige | snow storm |
| **borani:** boranî, ***far:*** *boranî* | purée de potiron | pumpkin purée |
| **bostan:** bostan/bîstan, ***far:*** *bûstan*, ***peh:*** *bostan* | potager | vegetable garden |
| **boza:** *boze*, ***far:*** *boze* | boisson faite de millet fermenté | fermented millet beverage |
| **bülbül:** bilbil, ***far:*** *bulbul* | rossignol | nightingale |

# C

| | | |
|---|---|---|
| **cağ:** cax | 1) roue à rayon (d'une bicyclette); 2) balustrade; 3) gros sac en cotonnade | 1) wheel with spokes; 2) parapet; 3) sack of heavy cotton |
| **cam:** cam, ***far:*** *cam* | verre | glass |
| **cambaz:** canbaz, ***far:*** *canbaz* | acrobate | acrobat, rope dancer |
| **camekân:** camekan, ***far:*** *camiken* | vitrine | shop window, anything built with glass panes |
| **camuş:** gamêş, ***far:*** *gavmîş*, ***peh:*** *gawmêş* | buffle | water buffalo |
| **can:** can, gîyan, ***far:*** *can*, ***ave*** *: yane* | âme, coeur | soul, heart |
| **canan:** canan, ***far:*** canicanan | aimée | beloved |
| **canavar:** cinawir, ***far:*** *canever* | monstre | wild animal, monster |
| **cengâver:** cengawer, ***far:*** *cengaver* | guerrier, héroïque | hero, warrior |
| **cenk:** ceng, ***far:*** *ceng* | guerre | war |
| **cevher:** gewher (cewher), ***far:*** *coher*, ***peh:*** *gohr* | essence, joyau | jewel, essence |
| **cicim:** carcim/cacim, ***far:*** *cacîm* | tapis tissé à la main avec des dessins brodés | rug woven on a hand loom with embroidered design |
| **ciğer:** ceger/cîger/cerg, ***far:*** *ciger* | foie | liver |
| **cihan:** cîhan, ***far:*** *cehan*, ***peh:*** *gêhan* | monde | world |
| **civciv/cücük:** cûcik, cîvcîvk, çîçik, çivîk, ***far:*** *cûce* | poussin | chick |
| **cıva:** cîwe, ***far:*** *cîwe* | mercure | quick silver, mercury |
| **civan:** ciwan, ***far:*** *cevan*, ***peh:*** *cuvan* | jeune | young |
| **coşmak:** ji coş, ***far:*** *cûş ji cûşîdan* | s'enthousiamer, s'emporter, exulter | be ramied away, be enthusiastic, to exult |
| **cömert:** comerd/camêr | généreux | generous |
| **cüda:** cuda, cida, ***far:*** *cuda* | éloigné, séparé | separated, remote |
| **curk/gurk:** kurk, ***far:*** *kurk, kurç* | | |
| **cüce:** cûce, 'ecuc, ***far:*** *cûce* | nain | dwarf |
| **cura:** curre,hacûc, ***far:*** *curre* | petite variété de bağlama (luth oriental) | the smallest variety of bağlama (oriental lute) |
| **cümbüş:** cunbuş, ***far:*** *cunbiş, ji cunbîden: livîn, bizvîn, bizav kirin* | 1) mouvement, agitation; 2) sorte de mandoline avec une caisse en métal | 1) motion, movement; 2) kind of mandoline with metal body |

**Dûmahîk heye**

# Çend modelên bergûz anjî şel û şepika

**Amadekar : Rojan HAZIM**

Bergûz navê desteyê şel û şepikan e. Desteyekî bergûza ji şel, şepik, şal an jî şûtik, kerik, lewendî û şaşikê (şaşik ji dersokek an jî du dersoka çêdibe) pêk têt. Belêm xelk bo bergûza, şel û şepik jî dibêjin. Şel û şepik cil û bergên qedîm yên xelkê me ne. Perokê şel û şepika bi timamî ji merez, kej an jî hirîya paqij tête çêkirin. Belêm perokê şel û şepikên baş û saxlem bi gelekî ve ji merezî tête çêkirin ku merez muyê bizinên çur e. Perokê şel û şepika mixabin ku niha kêm tête kirin. Ji ber ku hem wekî berê pez xwudankirin kêm bûye, hem jî çêkirina vî perokî gelek biha disekine û ji ber hindê jî, kirîn jî biha dibe. Lewma ev peroke êdî kêm têne dîtin û şel û şepik jî kêm têne dirûn. Evro di cografyayeke gelek teng da ev cilike têne ber kirin. Li navenda Kurdistanê; Hekarî, Botan, Behdîna û li başûr jî, kêmek li navçeyên Soranan têne dîtin.

Ji vî perokî bi newilên cuda şel û şepik têne dirûn. Em dê li jêr çend modelên şel û şepika pêşkêşî we bikin.

**1. Şemdînanî :**

Deste ji şel, şepik, kerik, şal anjî şûtik û dersokê pêk têt.

**Şel :** Deling nîv fireh in. Navran gurc û kurt e. Navtang jî ne dirêj e. Berûk bê tûrik in. Tinê devê berûka vekirîye. Helbet şel bi doxîn e.

**Şepik :** Mil teng û dirêj in û derhiçikên wan hem bê ber in, hem jî têne badan û bê lewendî ne. Herweha binçengên wan jî şeq (anku vekirîne, ne dirûne) û gurc in.

**Şal anjî şûtik :** Şal ji rîs tête raçandin. Şûtik ji perokê pembû anjî sentetîkî tête çêkirin.

**Kerik :** Ji livayê tête çêkirin.

Di modelê Şemdînanîyan da hindek hêlên Şemdîna hene ku di ser bergûzan da kerikî jî dikin ber xwe. Di ber kirina vî modelî da navtang û maldoxîna şelî dikeve bin şal an jî şûtikê û qurmiçikên şelî li navtangê têne belav kirin.

Ev model bergûze, helbet di serî da li Şemdîna û dorberî da û heta Gever, Tirgever, Mirgever, Dize û heta dorberên Sîdeka jî têne ber kirin.

Di vî modelî da heke kes bixwaze dikare, pistû, bersing û derhiçikên şepikî û herweha devê berûka, derdeling û dormandorê maldoxîna şelî jî bide nexş kirin.

**2. Ertoşîyanî-Zaxoyanî :**

Deste ji şel, şepik, kerik, du dersok û lewendîya pêk têt.

**Şel :** Deling ji navtangê fireh in û ber bi derdelinga ve teng dibin û navran fireh û nîv şor e. Navtang jî li ser nêhkan e, anku maldoxîn bi timamî nakeve bin şalê. Her li bin zîya şalê an jî şûtikê tête girêdan û qûrmiçikên şelî li ber û piştên navtangê têne kom kirin. Şel bi doxîn e. Ev bergûze jî bi berûk in, belêm berûkên wan bê tûrik in. Tinê devê berûka vekirîye.

**Şepik :** Mil fireh û dirêjtirin û derhiçikên wan jî bê ber in. Binçeng jî dîsa şeq in û şortir in. Bi lewendî ne.

Lewendî an li ser derhiçika têne pêçan an jî li paş enîşka têne girêdan.

**Lewendî :** Desteyê lewendîya cot in. Ji perokê cang anjî xizneyî têne dirûn.

**Şal anjî şûtik:** Şal ji rîs tête raçandin. Şûtik bi gelekî ve ji perokên pembû an jî sentetîkî tête çêkirin.

**Kerik :** Ji livaya herî bi kalîte tête çêkirin. Di vî modelî da bi gelekî ve kerik tête ber kirin.

**Şaşik :** Ji du dersoka tête çêkirin. Carina di bin şaşikê da kumekî ji dezîyê pembû hatîye vehunîn jî dikin serê xwe.

Yên ku dixwazin, pistû, bersing û derhiçikên şepikî û herweha devê berûka, derdeling û dormandorê maldoxîna şelî jî didin nexş kirin.

(Li navçeyên Hekarî û Behdîna şel û şepikên bi modelê Ertoşîyanî-Zaxoyanî têne ker kirin û dirûn; heke pistû, bersing û derhiçikên şepikî û herweha devê berûk û derdelinga û dormandorê maldoxîna şelî hate nexş kirin, bo wan "Bekir Begî" tête gotin.)

**3. Şirnexyanî-Botî :**

Desteyê bergûza ji şel, şepik, êlek, şal anjî şûtik û şaşikê pêk têt.

**Şel :** Deling heta binî wekî borîyê fireh in. Navran nîv gurc e. Derdeling bi nexş in. Berûk bê tûrik in û devberûk jî bi nexş in. Navtang dirêjtir e û maldoxîn dikeve bin şal an jî şûtikê û qurmiçik li navtangê hem têne belav kirin, hem jî li ber û piştê têne kom kirin. Wekî hemû bergûza şel bi doxîn e.

**Şepik :** Wekî hemû modelên bergûza bê pistû ne. Hiçik ji milî ve piçek teng in, belêm derhiçik bi bertir in û têne badan. Stu, bersing û derhiçik bi nexş in.

**Êlek :** Berê êlekî ji perokê bergûzan e, lê pişt ji betenê pembû an jî sentetîkî ye. Pişt bi kemer e. Li bersingê herdu alîya çar berûk hene. Li ber derê berûka milê çepê qulpika zincîra seeta berûkê jî heye. Pistû û bersing jî bi nexş in.

Ev modele hem bi şaşik û lewendî, hem jî bê şaşik û lewendî tête ber kirin.

**Şal an jî şûtik :** Şal ji rîs hatîye raçandin. Şûtik ji perokê pembû an jî sentetîkî ye.

Di vî modelî da jî yên ku dixwazin, pistû, bersing û derhiçikên şepikî û herweha devê berûka, derdeling û dormandorê maldoxîna şelî jî didin nexş kirin.

**4. Koçerî :**

Deste ji şel, şepik, êlek, lewendî, şal anjî şûtik û şaşikê pêk têt.

**Şel :** Deling nîv fireh, derdeling jî nîv teng in. Navran jî nîv şor e û navtang bilind e û maldoxîn dikeve bin şal an jî şûtikê. Şel wekî hemû bergûza bi doxîn û bi berûk e û berûk jî bi tûrik in.

**Şepik** : Mil nîv fireh, derhiçik jî bi ber in û bi lewendî ne. Lewendî bi gelekî ve li paş enîşkê têne girêdan.

**Êlek** : Wekî êlekê modelê Şirnexyanî-Botî ye.

**5. Rêncberî :**

Perokê vî modelî bi piranî ji merez an jî hirîya kalîteya duyê tête kirin. Wekî nav jî li ser bi gelekî ve xelkê ku palehî û rêncberîyê dikin, berdikin. Ker kirina vî modelî bi piranî nêzîkî modelên Koçerî û Zaxoyanî ne, ku pê rabûn û rûniştin sanahîtir e. Ev modele jî ji şel, şepik, şal an jî şûtik, lewendî û dersokê pêk têt.

**6. Sineyî-Bokanî :**

Ev modele li nav Kurdên Soran tête ber kirin. Perokê vî modelî malik malik e. Wekî tête dirûn, malik serwar in anku merîdyenî ne.

**Şepik :** Hiçik fireh û dirêj, derhiçik jî fireh û bi ber in û têne badan. Binçeng şeq û şor in. Ev modele bê lewendî tête ber kirin.

**Şel :** Navtang dirêj û fireh e û navran jî şor e. Deling li jor fireh û ber bi derdelinga ve teng dibin. Şel bi doxîn e.

Navtang û maldoxîn bi timamî dikeve binê şûtikê. Berûk hem bi tûrik, hem jî bê tûrik dibin. Li ser vî modelî bi gelekî ve şûtika ji perokê pembû an jî sentetîkî tête girêdan. Herweha ev model bergûze, bê kerik an jî bi kerik jî tête ber kirin. Kerikên vî modelî li hindek navçeyên Soranan bi sermilk in.

Nîvekarîyeke hemû perokên bergûza ew e ku, kirina perok û ker kirina bergûza, digel xelkê me yê navçeyê, lê bi gelekî ve bi destê fileyên navçeyê tête kirin. Bi taybetî jî li alîyê Hekarî û Bahdîna kirina perokên bergûza û ker kirin, ji alîyê fileyên Tiyarê ve dihate kirin. Hindî yên Bota bûn, ew jî ji destê fileyên Herbolê derdiket.

Belêm mixabin ku, evro kêmbûna hejmara fileyên navçeyê û guhurînên dî yên demografik ev huner û kare jî kêm kirîye, lewma peyda kirin û ber kirina vî libasî hem bi zehmet ketîye, hem jî gelek biha bûye.

Yêk nîvekarîyeke dî ya hemû bergûza jî, bê şal an jî şûtik nayên ber kirin. Herweha ji ber ku perokê bergûza gelekî zivir e, di hemû modelên bergûza da, li bin şelî an derpêyê dirêj an jî pîjema tête ber kirin.

**Ferhengok :**

**bergûz;** *desteyê şel û şepika*, ***taxima şel û şepika*** : şel ve şepik takımı

**dersok;** *axabanî, cemedanî, kefî* : kefye

**şaşik:** sarık

**kerik;** *êlek an jî cepkenê ji livayê hatîye çêkirin* : yün cepken

**perok:** kumaş, tekstil

**kirina perokî:** kumaş dokuması

**kerkirina perokî:** kumaş biçimi

**file;** *fele, Îsewî, Xiristiyan* : Hrıstiyan

**gurc:** çekik, çekilmiş

**şor:** sarkık, sarkmış

**sanahî:** kolay

**hiçik:** kol

**derhiçik:** kol ağzı

**deling:** paça

**derdeling:** paça ağzı

**pistû:** yaka

**doxîn:** yünden yuvarlak şekilde örülmüş ve kemer görevi gören kalınca ip

**maldoxîn:** kemer olarak kullanılan doxînin geçirildiği köprü

**şal:** yünden dokunmuş bel kuşağı

**şûtik:** pamuk veya sentetik kumaştan bel kuşağı

**qurmiçik:** pile

**lewendî:** dirseğe takılan ve kolağzından sarkan uzunca bez (giysinin önemli aksesuarıdır)

**serwar:** dikey, boylam, meridyen

**cang:** amerikan bezi

**xizne:** patıska

**sermilk:** omuzluk

# Hinek ji xwarinên Serhedê

Amadekar : ELÎŞÊR

**GIRARA DEWÎ, DEWÎN, MEHÎR :**
Melzeme: Dan, pincar (kereng, mendê, pung, guhbizing, spanax...), dew û xwê.
Dan tê kelandin û pişt re dew dikin ser. Lê ji bo ku dewîn nebizire, berî ku dew têkin ser, hêk û ar (ard) dikin nav. Bêyî sekin heta ku bikele tê tev dan. Piştî ku keliya pincar dikin nav.
Hinek cûreyên din ên girarê jî hene û awayê çêkirina wan wekî yê jorê ye, lê li gor melzemeyê dikin nav tê bi nav kirin. Wekî girara (mehîra) bi nok, girara sar, girara germ, girara qiç (girara bêpincar).

**ŞORBE :**
Şorbe, piranî li gor ew melzemeyê tê de tê bi kar anîn tê bi nav kirin. Wekî mişewşî (şorbeya nîskan), şorbeya hurkên danî, şorbeya çirêşê, şorbeya mastî, şorbeya birincê, şorbeya terbiyekirî (goştê hêrayî, mîqtarek zêde bîbera reş dikin nav qîymê û hinek jî birinc bi kîmyonê dikin nav û paşê kifte çêdikin. Dikin nav avê û pişt re hinek ar bi zerka hêkê re di nav avê de baş tê çeliqandin û dikin nav kifteyan heta ku baş tîr dibe. Pişt re hinek nivişk tê qijilanrdin û hinek bîbera sor dikin nav û dibe şorbeya terbîyekirî. Birinca di nav goştê hêrayî de gerek e gelek kêm be).

**GIRARA SIBÊ :**
Melzeme: Dan, goşt, rûn.
Dan û goşt dikin dîzekê û dikin tendûrê. Ew heta sibê di tendûrê de dimîne û serê sibê derdixin û dixwin.

**AVŞOR, şorav, avşork :**
Melzeme: Hestiyên ji biryanê mayî, goştê sor, bacanê reş, domatês, fasûlye û ava ji biryanê palayî.
Ev serê sibehan tê xwarin.

**AVŞORA KEŞKAN :**
Melzeme: goştê bi hestî, kartolên biçûk ên spînekirî, avîdewê keşkên pişaftî, rûn, pîvaz.
Goştê bi hestî tê pehtin û pişt re kartolan dikin nav û ew jî dipije. Paşê avîdewê keşkên pişaftî dikin nav û dawiyê jî pîvazên di rûn de hatî sor kirn, dikin ser.

**SAVAR :**
Li aliyê serhedan, çend cûre savar hene. Taybetmendiya savar an birinca li van ciyan ew e ku, piştî savar an birinc tê pehtin rûn diqijilînin û berdidin ser vê birinc an savarê.
Savar, bi gelemperî li gor melzemeyê dikin nav tê bi nav kirin. Wekî savara nîskan (nîskên lib), savara serbizêr, savara sîngmirîşk, savara birişte yan bişehriye, savara baqleyan, savara kerengan, savara caxê, savara gulikê, savara helizan û hwd. Ji bilî van li aliyê Agiriyê savara sade jî tê çêkirin. Ev savara han piştî pehtina wê temam dibe, dov (dûv) perçe perçe dikin û datînin ser.

**BIRINCA MIQEŞER :**
Miqeşer: Nok tê xaşandin û qalikê wê li ser tê rakirin. Pişt re bi kirdanekê (merdane) tê perçiqandin heta baş hûr dibe. Paşê jî wê hiş dikin û hiltînin. Berî ku birinc bê çêkirin hinekî dikelînin û dikin nav birincê.

**ÎÇPÎLAV :**
Eger perçe goşt an mirîşk bi biharatê re bikin nav birincê, jê re îçpîlav tê gotin.

**PERDEPÎLAV :**
Eger îçpilavê bikin nav hevîrê ku bi rûn û şîr hatibe sitiran, dibe berdepilav. Li hinek ciyan kişmişê jî dikin nav.
Hevîr baş tê vekirin û wê îçpilavê dikin nav û devê wê baş asê dikin. Pişt re dikin nav quşxaneyekê û dipêjin.

**DOLMÊN BIQATIX (QATIXLÎ DOLME) :**
Melzeme: Savara hûr, goştê sor ê hêrayî, sîrmast, rûn û bîbera bi hev re sorkirî.
Savara hûr û goştê sor ê hêrayî dikin nav hev û baş miz didin. Bi vê libên wekî dolmên pel û keleman tên çêkirin û paşê tên pehtin. Piştî ku ew pijiya derdixin û sîrmast û ew rûn û bîbera bi hev re hatî sor kirin, dikin ser.

**KILORÎK (TIRŞMANÇ AŞI) (xilorik, kiftê/kutilkê heşandî) :**
Melzeme: Savara nîv hûr, goştê hêrayî.
Savara nîv hûr û goştê hêrayî dikin nav hev û baş miz didin. Pişt re ji vê xilorîkên gilover û biçûk tên çêkirin û dikin nav avê û dipêjin. Ji bo ku bi tam be, biharat û tirşa hinar û alûçeyan jî dikin nav. Ev xwarineke avî e.

**ÎÇLÎ KUFTE :**
Melzeme: Savara hûr, bezê ser paresû yan gurçikan, goştê hêtan ê baş hatî hêrayî, bîbera reş, pûlbîber.
Savar, goştê hêrayî û biharat bi hev re baş tên li hev dan. Pişt re çiqas ji destê mirov bê ew gilover û tenik tê vekirin û bez dikin navê û devê wê didin hev. Pişt re di nav avê de tên kelandin. Piştî ku çend kel bi ser de bên, derdixin û dixwin. Piranî bi mehîra karî (karî aşi) re tê xwarin. Ev cûre kufteyên han tenê li Bedlîsê tên çêkirin.
Li gundan perçe goştên biçûk an goştê hêrayî jî dikin nav wî bezî û libên kufteyan jî, li gor yên li bajêr, mezintir in.

**TURŞÎ DOLME :**
Melzeme: Goştê sor ê hêrayî, savara hûr, kelem, hebirman (hinarê hişkkirî), miqeşer an nîskê reş.
Goştê hêrayî, savar, hebirman û miqeşer an nîskê reş dikin nav hev û baş li hev dixin. Pişt re kelem tê xaşandin û perçên qasî destekî jê tên vekirin û ew savara hatî hazir kirin, dikin navê û devê wê didin hev û dipêjin.

**KIFTEQUL, (kifteyên derewdanî) :**
Melzeme: Hûrkê savar û mixelet ( ew kelemê ku payîzê hûr hûr perçe dikin û dikin kûpan û ji bo zivistanê hildidin) , hinek ar, nivişk.
Mixelet bi kelemê wê re tê kelandin û berdidin ser savarê, piştî ku savar germijî tê mizdan û di vê navê de hinek ar didin ber û pişt re jî ji vê kifte çêdikin. Di dawiyê de careke din mixeletê dikelînin û kiftan dikin nav û bi rûnekî zêde ve tê xwarin.

**GEBOL :**
Melzeme: Savara gilgilê, keşk û rûnê qijilandî.
Piştî savara gilgilê hat çêkirin, dewê ji keşkên pişaftî dikin ser û dawiyê jî ew rûnê qijilandi berdidin ser.

**PIÇUC :**
Melzeme: Savara herî hûr (simîtk), pîvaz û rûn.
Ev melzeme hemî bi hev re tên kelandin. Gerek e ne rohn be û ne jî tîr bimîne.

**ŞILLE, şile :**
Melzeme: Savar, domatês, hinek pîvaz.
Savar tê pehtin û pişt re domatês û pîvaz jî sor dikin û dikin nav wê savarê. Ev jî wekî piçucê gerek e ne rohn be ne jî tîr be.

**BIRYAN, parêv :**
Laşê pez ê sax di êvarê de tê terbîye kirin (tenê bi xwê). Serê sibê bi çengelan ve dikin û dikin tendûra ku di erdê de bi taybetî hatiye çêkirin û heta baş sor dibe û pişt re derdixin. Perçe perçe jê dikin û bi kemalê afiyet dixwin.

**PAPAZ YEXNÎ :**
Melzeme: Perçên goştî, pîvazê wekî kixsan û salçe.
Van melzemeyan hemî dikin nav hev û dipêjin û dibe papaz yexnî.

**PARESÜ, kalek :**
Melzeme: Birinc, paresû û biharat.
Birinca bi biharatan çêkirî dikin nav paresûyan û diavêjin firinê û dipêjin.

**HES DOLMESÎ :**
Melzeme: Birinc an savar, kelem an pelên silk û mêwan û hwd, goştê hêrayî yê bi rûn, bîbera tûj û salçe.
Birinc an savar bi wî goştê hêrayî re tê mizdan. Pişt re ew belgên silk an mêwan qasî destekî tê jê kirin û ew melzemeyê mizdayî dikin nav û dipêjin. Piştî hat pehtin bîbera tûj û salçe dikin ser û dixwin.

**KURT DOLMESÎ :**
Melzeme: Kelem, gilgil, keşk.
Gilgil baş tê mizdan û pişt re dikin nav pelên keleman ên qasî destekî vekirî û dipêçin û pişt re jî dipêjin. Piştî ku hat pehtin, avîdewê keşkên pişaftî dikin ser û dixwin.

**ÇORTÎ TEPLEMESÎ :**
Melzeme: Tirşiya keleman, savara (şîş) ji genimê spî (kirik) hatî çêkirin, sîr, rûnê sorkirî.
Savar baş tê mizdan û pişt re ji vê libên pehnaya wan qasî pehnaya sê tiliyan tepleme tê çêkirin. Pişt re jî tirşiya keleman dikin nav dipêjin. Piştî hat pehtin rûnê sorkirî dikin ser û dixwin.

**ÇORTÎ AŞI :**
Melzeme: Dan, nîsk, goştê paresûyan.
Ev melzemeyên han hemî bi hev re tên kelandin. Xwarineke avî e.

**KIFTÊ ÇORTIYAN (Çortî Koftesî) :**
Melzeme: Hemî melzemeyên çortî teplemesiyê tên bi kar anîn. Ji bilî wan goştê hêrayî tê sor kirin û biharat dikin nav. Pişt re di ava çortiyê de tê pehtin û dawiyê de ew av jê tê palandin. Pişt re jî pelên çortiyê bi kifteyan re dikin tepsiyê û rûnê sorkirî dikin ser.

**KIFTÊ SÎR :**
Melzeme: Savara nîvhûr, hêk, hinek ar, hinek çantirî û xwê.
Ev melzemên han hemî bi hev re di nav ava germ de tên nerm kirin. Nêzîkî saetekê bi vî awayî dimîne. Piştî ku nerm bû, ji vê melzemê kifteyên piçûk ên gilover tê çêkirin û di nav avê de tê xaşandin.

**HELÎSE :**
Melzeme: Dan (eger danê kirikê hebe baştir e, lê eger ew tune be mirov dikare danê genimekî bêsimbêl bi kar bîne), goşt, nivîşk, xwê û av.
Dan û goşt di deneke ax de û di tendûreke erdê çêkirî de tê kelandin. Bi kêmasî du kes li ber rûdinin û bi darekî taybetî hatî çêkirin li hev didin. Ev lihevdana han heta ku goşt bi hestiyên xwe ve di nav dên de bihele dewam dike. Pişt re dikin tepsiyan û orta wê hinek vedikin û nivîşk dikin nîvê.

**KELEDOŞ :**
Melzeme: Nîskê hêşîn ê nehêrayî, qelî yan goşt, nanê loş, avîdewê keşkanû kakilê gûzan ê hêrayî, salçe û xwê. Li hinek navçeyan pincarên wekî heliz, cax û sipîtakê melzemeyên serekî yên keledoşê ne. Li hinek navçeyan goşt û pincar bi hev re tên bi kar anîn, li hinek ciyan jî tenê goşt an jî pincar dikin nav.
Nisk tê pehtin. Qelî an goşt di nav rûn de bi pîvazan re tê sor kirin. Piştî ku merheleya pehtin û sorkirinê xelas bû, qatek nanê loş qatek nîsk û qatek din jî qelî an goşt û kakilên gûzan ên hêrayî li ser hev tên danîn. Mirov dikare li gora kesên heyî van qatên han zêde bike. Di dawiyê de avîdewê keşkandikin ser û pişt re jî hinek salçeya di nav rûn de hatî qijilandin, berdidin ser.
Ev awayî jorê li aliyê Wanê û hinek ciyên din tê çêkirin. Li aliyê Bedlîsê û Agiriyê û dora wan, qatek pincara wekî sipîtakê, helizê û yan pincareke din jî tê danîn, lê melzemeyên din eynî ne. Li aliyê Bedlîsê gelek ciyan goşt nakin nav û tenê pincar tê bi kar anîn.

**TUTMANC, PIŞRUK :**
Melzeme: Nîsk, qelî, pîvaz, dewê keşkê, rişta avê û xwê.
Pêşî nîsk tê kelandin. Pişt re riştê dikin nav. Piştî vê avîdewê keşkandikin nav û di dawiyê de jî pîvazên qelandî bi qeliyê re dikin ser.
Li hinek navçeyan di şûna riştê de hevîrê nû hatî vestirîn jî tê bi kar anîn.

**TIRŞIK:**
Melzeme: Dan, karî, sêbiske, fasulyên spî, lobiyên hişkkirî, nok, kulindir, huliyên hişkkirî, goştê bihestî, arxafk (rûn û arê di nav hev de sorkirî), zerişk an pestîla huliyan û xwê.
Ji bilî arxafkê, ew melzemeyên jorê hemî bi hev re tên kelandin û di dawiyê de arxafk dikin ser û dibe tirşik.

**SERDEW, SERBIDEW :**
Melzeme: Savara hûr (zêrik), dewê keşkê, rûn, bîber û xwê.
Pêşiyê savar tê pehtin û heta baş bipije û ava xwe bikêşe tê li hev dan. Pişt re avîdewê keşkandikin ser û di dawiyê de jî rûnê qijilandî yê hinek bîber tê de berdidin ser. Ev xwarina han a zivistanê ye û bi taybetî rojên ku bager be tê çêkirin.

**'PELÎ, 'pelûk, 'pelûl, 'pelûr :**
Melzeme: Ar, rûn, xwê.
Ar di rûn de tê sor kirin. Pişt re avê dikinê û rûn jî berdidin ser.
Ev xwarina kesên ku halê wan tenik e.

**'PELIYA KARTOLAN, HEVRÎŞKA KARTOLAN, KARTOLÊ XWEŞKIRÎ :**
Melzeme: Kartol, pîvaz, rûn û xwê.
Kartol tê pehtin û pişt re baş tê mizdan. Pîvaz di nav rûn de tê sor kirin û pişt re dikin nav kartolan.

**WELÎBAX :**
Melzeme: Hevîr (gerek e bi şîr hatibe vestirîn), kartol, penîrê spî û qelî.
Hevîr tê vekirin û melzemeyên jorê dikin navê û bi awayekî gelekî gilover didin hev û bi perçek hevîr devê wê baş asê dikin û dipêjin. Piştî hat pehtin dikin çar perçe û tirşa zuxalê (pestîla huliyan, alûçeyan û hwd) tê pişavtin û dikin ser.

**ZULFÎ :**
Melzeme: Ar, kakilê gwîzan, bindeq, mewîj.
Ar di nav rûn de tê vestirandin. Pişt re qatek ev arê vestirî û qatek jî kakilê gwîzan, bindeq û mewîj li ser hev tê danîn. Ev li gorî hejmara kesên heyî dikare çend qat bê raxistin.

**GOŞTÊ PIZOTÊ :**
Melzeme: Goşt û biharat.
Goştê çermekal û yan jî yê ne kêrhatî, wekî zolên pehn baş tê vekirin û goştê baş yê kêrî xwarinê bê dikin navê û dipêçin. Pişt re dikin bin agirê pizot û disekinin heta ew goştê çermekal dişewite. Paşê wî goştê hindurê çermekalan de ye derdixin û dixwin.

**XWARINÊN XWEŞKIRÎ :**
Li aliyê serhedê li hinek ciyan, eger pincar, kartol, kulindir û tiştên wekî wan, bên pehtin û pişt re bên palandin û baş bên mizdan û hêk bişkînin ser, jê re kartolên xweşkirî, pincara xweşkirî, kulindirên xweşkirî, baqlên xweşkirî û hwd tê gotin.

**SINGESÎR : (Singesîr xwarina mîr)**
Melzeme: Nanê loş, sîrmast (gerek e mast yê mîyan be), nivişk û xwê.
Nanê loş tê perçe perçe kirin û pişt re sîrmast û nivişkê dikin ser.

**BORANIYA KULINDIRAN, kundirmast :**
Kulindir, sîrmast û xwê.
Kulindir tê pehtin û baş tê mizdan. Pişt re sîrmastê dikin ser.

**ÇIRTMA KULINDIRAN, çirtme :**
Melzeme: Kulindir, nîsk, fasulye an lobîyên hişk, rûn.
Kulindir tê sipî kirin û perçe perçe kirin. Pişt re hemî melzeme bi hev re tê pehtin. Xwarineke avî ye.

**CAX :**
Melzeme: Cax, hêk, rûn.
Cax tê kelandin û piştî ku keliya, eger mirov bixwaze xweşkirî bixwe, mirov ava wê dipalîne û digivêşe heta ku ava tê de xelas dibe û pişt re hêk dişkîne ser û wekî caxê xweşkirî dixwe. Lê eger mirov bixwaze bi avî be û wekî xwarineke avî bixwe, ava wê nayê palandin û bi wî awayî tê xwarin.

**ÇILBIRA PÎVAZAN, ŞUWA PÎVAZAN :**
Melzeme: Pîvazê hêşîn, rûn, salçe.
Pîvaz di avê de tê pehtin û pişt re rûn û xwêya wê dikin ser û bi nan re tê xwarin. Şuwa kartolan, şuwa lobiyan, şuwa fasulyan...: Ev jî di şûna pîvazan de kartol, fasulye û lobî tê bi kar anîn.

**ŞUWA TIRŞ :**
Melzeme: Pincar (spanax, tirşok/evelîk, hêk, rûn, pîvaz, pestîla huliyan, salçe.
Pîvaz û salçe di nav rûn de tên sor kirin. Pişt re tirşok dikin nav. Mirov dikare hêk an goşt jî têke nav. Paşê pestîla huliyan dikin ser û di dawiyê de jî hêk dişkînin navê.

**ŞILIK :**
Melzeme: Savara hûr, pincar, kartol, nivişk, pîvaz, salçe, domatez.
Ev melzemeyên han hemî bi hev re tên pehtin û pişt re nivişk dikin ser.

**XASÎL, xaşîl, kutayî :**
Melzeme: Genimê kutayî, goşt, nivişk.
Goşt û genimê kutayî bi hev re tên kelandin. Ev kela han, gerek e heta hebên genim bihele dewam dike. Pişt re dikin tepsiyan û nivişk dikin ser û dixwin.

**XUS :**
Melzeme: Genimê hêrayî, gûlik (cureyek pincar e) û rûn.
Genimê hêrayî û gûlik bi hev re tên kelandin û pişt re hinek rûn jî dikin nav û ew dibe xus.

**ASÎDE :**
Melzeme: Ar, rûn, kakilê gwîzan û şerbet (şekir-av).
Ar û rûn di nav hev de tên sor kirin û hinek kakilê gwîzan jî dikin navê. Şerbeta wê tê kelandin. Piştî ku ar û kakilê gwîzan baş hat sor kirin, şerbet dikin ser. Ev xwarina han bi taybetî ji bo jinên ku nû hemla xwe danîne tê çêkirin. Awayê din şêrînahiya piştî xwarinê ye. Li Bedlîsê jê re Şirîn Qeynenax tê gotin.

**QEYSERÛN, kincirûn, tirşka mişmişan :**
Melzeme: Qeysî, rûn û eger hewce be hinek jî şêrînahî.
Qeysî di nav rûn de tê sor kirin. Eger tirş be hinek şêrînahî dikin nav.

**GOZBEZ, gozebez (hingivîn û kakil) :**
Melzeme: Dims û kakil.
Ev herdu bi hev re hinekî tên kelandin û pişt re dema ku sar dibe dixwin.

**LALEPÊT :**
Melzeme: Hêk, mast, rûn, karbonat û şerbet.
Melzemeyên wê hemî bi hev re tên sor kirin û pişt re şerbet dikin ser û wekî şêrînahiya piştî xwarinê tê xwarin.

**XURME :**
Melzeme: Hêk, ar, mast, rûn, karbonat û kakilê gwîzan.
Hêk û ar di nav rûn de li hev didin û hinek karbonat jî dikin nav û bi vî awayî hevîrê wê hazir dikin. Ev hevîr wekî perçên biçûk biçûk tê vekirin. Pişt re kakil dikin navê û li ser bijîngê dipêçin. Pişt re di nav rûn de sor dikin. Eger mirov ji bo taştê bi kar bîne şerbet nakin ser, lê eger mirov wekî şêrînahiya piştî xwarinê bi kar bîne, şerbet dikin ser.

**ŞORBEŞÎR, gireşîr, sûtlaç :**
Melzeme: Birinc, şîr, şekir, darçînê hêrandî.
Birinc û şîr û şekir bi hev re tên kelandin. Ev kela han heta av tê de nemîne dewam dike. Pişt re dikin tasikan û darçîna hêrandî li ser direşînin.

**MEHELEBÎ :**
Melzeme: Arê birincê, şîr û şekir, darçînê hêrandî.
Şekir dikin nav şîr û dikelînin. Pişt re arê birincan dikin nav şîr û baş li hev dixin da ku tîr dibe. Paşê jî hemî dikin nav hev û dikelînin heta ku tîr dibe. Pişt re jî dikin tasikan û darçîna hêrandî li ser direşînin.

**XWERÎS, MIRTOXE :**
Melzeme: Ar, rûn.
Ar di nav rûn de baş tê qumandin û serê siban bi hingivîn an reçelê re tê xwarin. Eger şêrînahî bikin nav vê xwerîsê, jê re xwerîsa şêrîn tê gotin.

**ARXAFK, kincirûn, arxafka bi kincir :**
Melzeme: Ar, hêk, rûn.
Rûn tê helandin û pişt re ar didin ber û li hev didin heta ar baş diqome. Pişt re jî hêk dişkînin ser û li hev didin heta hêkên wê bipijin. Serê siban bi hingivîn an rêçelê re tê xwarin.

**KADÊ GWÎZAN :**
Melzeme: Hevîrê bi şîr û rûn hatî vestirîn, kakilê gwîzan ê hêrayî yan kutayî.
Qatek hevîr û qatek kakilê gwîzan li ser hev tê raxistin. Li gor kesên heyî ev qatên han dikarin hindik an zêde bibin. Pişt re dikin tenûrê û dipêjin.

**KADÊ TEWÊ :**
Melzeme: Hevîr, xwerîs, rûn.
Hevîr vedikin û pişt re xwerîs dikin navê û didin hev. Pişt re rûn dikin tewê û ew hevîrê xwerîs tê de dikin nav wî rûnî û heta baş sor dibe sor dikin.

**NANÊ TEWÊ, biçirk, zengil, zîlopî :**
Melzeme: Hevîr û rûn.
Hevîr qasî mezintiya tewê tê vekirin û pişt re dikin nav rûn û heta ku sor dibe tê pehtin.

**Dom dike**

# Devoka Qerejdaxê

## - X -

**Amadekar : Mehmûd LEWENDÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | ingilîzî |
|---|---|---|---|
| şewate, agir, agirberbûn | yangın | incendie | fire, arson |
| şêlandin : şelandin, tazî kirin, rûs kirin | soymak, soygun yapmak | dépouiller, voler | to rob |
| şêlpîs, şêlgenî, şêlxerab : nelêkdayî, bêserûber | evinin görünümü kötü olan, evini kötü çekip çeviren kadın | mauvaise ménagère | bad housewife |
| şênî | ahali | population, habitants | population, inhabitants |
| şêz | at sineği | mouche-araignée de cheval | forest fly |
| şikev: şikêv | tekne, içinde kuru çökelek eritilen tahta tekne | pétrin (en bois) | wooden dough trough |
| şikeva, (nanê şikeva) : şikevale | mayasız ekmek | pain azyme | unleaven bread |
| şikeva belav kirin | 1) ölülerın ruhu için yada kötü bir rüyadan sonra dağıtılan sadaka ekmeği; 2) erkekçe dağıtmak, onlarla cömertçe yatmak (kadın içe) | 1) distribuer du pain pour la paix des morts; 2) être généreuse avec les hommes, coucher avec plusieurs hommes | 1) to give away bread to the needy for the peace of dead; 2) to be generous with men, to sleep with many men |
| şilî | yağış, ıslaklık, yağmur | pluie, précipitation, humidité | rain, dampness |
| şilope : şilove | sulu kar, sulu sepken | giboulée | sleet |
| şilp : şirp, şilq, çirp, pir | aniden, zıp | soudain, tout d'un coup | suddenly |
| şil û pil : ter û şil, av û zêlak | yamyaş, ıpıslak | tout mouillé, trempé | all wet, soaking |
| şima : şema | balmumu | cire | wax, beeswax |
| şirt : gêzik, melkês, cerîfk, bermalk | süpürge | balai | broom |
| şirt kirin : gezî kirin, malîn, maliştin | süpürmek | balayer | to sweep |
| şîrgermî : têhnşîrî, şîrogermî, şîregermî | ılık | tiède | tepid, lukewarm |
| şorik : girêz, gilêz, gilîz, gilîze | salya | salive | saliva |
| şortik : şotik, deşo | çok su katılmış olan ayran | petit-lait très dilué | very dilute fermented milk |
| şoşman : şoşmîn, brazava | sağdıç | ami intime du marié qui le conseille pour la nuit nuptiale | bridegroom's best man who advises him for the nuptial night |
| şûş bûn : şoş bûn, şîş bûn | 1) kayarak düşmek; 2) kandırılmak, yoldan çıkarılmak, enayi yerine koyulmak | 1) tomber en glissant, s'étaler; 2) se faire avoir | 1) to slip, fall headlong; 2) to be caught, to be cheated |

| | | |
|---|---|---|
| hendek: *xendeq*, ***far:*** xendeq, kende | tranchée, douve | ditch, trench |
| hengame: *hengame*, ***far:*** hengame | vacarme, tumulte, tapage | tumult, uproar |
| her: *her*, ***far:*** her | chaque, chacun | every, each |
| herrü: *ya herrû ya merrû: ya hero ya mero* | ça passe ou ça casse | to make or break |
| hezaren: *hezarreng*, ***bot:*** delphinium consolida | delphinium, dauphinelle, pied d'alouette | delphinium |
| hır: hır çıkarmak: *xirûcir* | querelle, dispute | dispute, quarrel |
| hirbo: *xirpo* | grossier, brute | booby, lout, clumsy boorish fellow |
| hiç: *hîç (=qet)*, ***far:*** hîç, ***peh:*** hêç | rien, aucunement | nothing, none |
| hoca: *xoce*, ***far:*** xwace | maître | master |
| hodbehot: *xwe bi xwe*, ***far:*** xwud be xwud | soi-même | one's self |
| horoz: *xoroz (=dîk, dîkil)*, ***far:*** xurûs, ***peh:*** xiros | coq | cock |
| hoş: *xweş, xoş*, ***far:*** xweş, xoş | plaisant, agréable | pleasant, agreable |
| hor: *xor, xwar, xar, xwehr*, ***far:*** xwar, ***peh:*** xwar | méprisable | despicable, contemptible |
| hoşaf: *xoşav, xweşav*, ***far:*** xweşab, xoşab | entremets de fruits cuits au sirop | stewed fruit with plenty of juice |
| hoşbeş: *xweş baş, xweşbêş*, ***far:*** xoş baş | conversation amicale | friendly chat, friendly discussion |
| hunhar: *xwînxwar*, ***far:*** xwînxwar | sanguinaire | blood thirsty |
| hunriz: *xwînrêj*, ***far:*** xwînrîz | sanglant, qui fait verser du sang | bloody, causing blood-shed |
| hurda: *xurde*, ***far:*** xurde, ***peh:*** xortek | feraille | scrap metal |
| hurdahaş: *hûrûxweş, hûrûxiş, hûrxaşan* | vermoulu, en pièces | worm-eaten ; in pieces |
| huy: *xûy*, ***far:*** xwûy | caractère, habitude | character ; habit, temperament |
| hüner: *huner*, ***far:*** huner, ***part/peh:*** huner | art, talent, habilité, dextérité | art, skill, talent, ability, dexterity |
| hünkar: *xwînkar, xunkar*, ***far:*** xunkar, xûndger | souverain, sultan | sultan, sovereign |
| incir: *hêjîr, hejîr*, ***far:*** encîr, engîr, encîl | figue | fig |
| ibrişim: *hevrişim, hevirmiş*, ***far:*** ebrîşm | soie | silk |
| işkence: *şkence*, ***far:*** şkenc | torture, sévice | torture |
| kaftan: *xiftan, xeftan*, ***far:*** xeftan | cafetan | kaftan |
| kahraman: *qehreman, qareman*, ***far:*** qehreman | héros | hero |
| kahkül: *kakul*, ***far:*** kakûl | mèche de cheveux | lock of hair |
| kalender: *qelender* | bohème, personne non conventionnelle | bohemian ; unconventional person |
| kalleş: *qeleş, qelaş*, ***far:*** qellaş, kellaş | traître, déloyal | untrustworthy ; treacherous |
| kam: *kam*, ***far:*** kam | désir, souhait | desire, wish |
| kama: *qeme*, ***far:*** qeme | poignard | dagger |
| kart: *qert* | vieilli, endurci, dur | hard, toughened, aged |
| kelek: *kelek* | radeau | raft |
| kelepçe: *kelebçe, kelemçe*, ***far:*** kelepçe | menotte | handcuff |
| kelle: *kele, kelle*, ***far:*** kelle | tête | head |
| kellepaçe: *kellepaçe (=serûpê)*, ***far:*** kellepaçe | plat de tête et pieds de mouton | a dish of sheeps trotters |
| kem: *kêm*, ***far:*** kem, ***peh:*** kem | 1) mauvais, malicieux; 2) peu, défectueux | 1) bad, evil, malicious; 2) few : defective |
| keman: *keman, kevan*, ***far:*** keman, ***peh:*** kemançe: *kemançe, kemençe*, ***far:*** kemançe | petit violon à trois cordes | small violin with three strings |
| kement: *kemend*, ***far:*** kemend, ***peh:*** kemend | lasso | lasso |
| kemer: *kember, kinber, kemer, kimer*, ***far:*** kemer | ceinture | belt |
| kenar: *kenar, kinar*, ***far:*** kenar, ***peh:*** kener | côté, bord | side, edge, border |
| kene: *gene*, ***far:*** kene | tique (du bétail) | tick (on animals) |
| kenger, kengel: *kenger, kengir, kereng* | chardonnette, artichaut sauvage | cardoon, wild artichoke |
| kepçe: *kepçe, kemçe*, ***far:*** kebçe, kefçe | louche | ladle |
| kepek: *kapek, kepek, kapik*, ***far:*** kepek | son | bran |
| kereste: *kereste*, ***far:*** kereste | bois, planche, matériau | wood ; timber, plank |
| kereviz: *kerewîz, kerefs, kerewiz*, ***far:*** kerefs, keresis | céleri | celery |
| kerhane: *kerxane*, ***far:*** karxane | bordel | brothel |
| keriz: *karêz, kerîz*, ***far:*** karîz | crédule, | credulous |
| kervan: *karwan, kerwan*, ***far:*** karvan | caravane | caravan |
| kervanseray: *karwansera, kerwansera*, ***far:*** kervansera | caravansérail | caravanserail |
| kese: *kîse, kîs, kîsik*, ***far:*** kîse | 1) bourse; 2) sac, pochette | 1) purse; 2) bag |
| kesek: *kesek, kersek* | botte de terre | clod, lump of earth |
| keşkek: *keşke*, ***far:*** keşkek | plat fait de blé bouilli avec de la viande | a dish of wheat stewed with meat |
| keşkül: *keşkol*, ***far:*** keşkûl | sébile | beggar's cup |
| keşmekeş: *kêşmekêş*, ***far:*** keşmekeş | désordre, trouble, grande confusion | disorder, great confusion |
| kete: *kade* | galette faite avec de la farine, du beurre et des oeufs | a kind of pancake |
| kevgir: *kefgîr*, ***far:*** kefgir | écumoir | skimmer, perforated ladle |
| ki: *ku, ko, ke* | que, qui | that ; who |
| kil: *gil*, ***far:*** gil | argile | clay |
| kilim: *kilîm*, ***far:*** kilîm, gilîm | kilim | kilim |
| kin: *kîn*, ***far:*** kîn, ***peh:*** kên | haine, grief | hatred, grudge |
| kindar: *kîndar* | vindicatif, rancunier | vindictive |
| kirikit: *kerkît, kergît* | peigne d'un métier à tisser | comb of a loom |
| kişmiş: *kişmîş, kişmiş* | variété de raisin sans pépin | kind of seedless raisin (smaller than sultana) |
| kizir, gizir: *gizîr* | lieutenant du chef de village; dignitaire | assistant headman |
| korunga: *korîgan, qorîngan* | sainfoin | sainfoin |
| köçek: *koçek*, ***far:*** kûçek | danseur, danseuse | dancer |
| köfte: *kifte, kufte*, ***far:*** kifte | boulette de viande | meat balls |
| kör: *kor*, ***far:*** kûr, ***peh:*** kor | aveugle | blind |
| köse: *kose, kûse*, ***far:*** kose | imberbe | beardless |
| köstek: *kostek*, ***far:*** kûstik | 1) chaîne de montre; 2) chaînes, fers | 1) watch chain; 2) fetter, hobble, chains (for prisoners) |
| köşe: *goşe, koşe*, ***far:*** gûşe | coin, angle | corner, angle |
| köşebent: *goşebend* | lame de fer pour fixer les coins | iron hook for fixing corners |
| köşk: *koşk, koçk* ***far:*** koşk | villa, pavillon | villa, house |
| kötek: *kotek, kutek*, ***far:*** kotek | bastonnade, action de battre | a beating, the act of beating or cudgeling |
| küçük: *kiçik, qiçik (=biçûk)*, ***far:*** kûçek | petit | small, little |
| kükürt: *gogird, gûrd, kifrît*, ***far:*** gûgird | sulfure | sulphur |
| külah: *kulah, kuleh*, ***far:*** kûlah | chapeau conique en feutre, bonnet | conical hat or cap |
| külünk: *kuling, kuleng*, ***far:*** kuleng | pioche | pick |
| küm: *1) kom, kûm; 2) gom* | 1) amas, tas; 2) bercail | 1) heap; 2) small sheep fold |
| kümbet: *gumbed, gunbed, kumbed*, ***far:*** gunbez, gunbed | dôme, voûte, coupole | dome, vault, coupola |
| küncü: *kuncî*, ***peh:*** kuncît | sésame | sesame |
| küp: *kûp* | jarre | earthenware jar |
| küşne: *kuşne, kizin* | variété de vesce | a kind of vetch (given as folder to oxen) |

# Hinek lîstikên gelerî

**Amadekar : Selam NÛMAN**

***Lîstikên li derve***

**Çirr, birr, topşeq, birranê**
**Çavgirtînk**
**Tûş**
**Nikilkê**
**Xeta**
**Hingilyo**
**Qaç**
**şepiya (goga) qehfikan**
**Eskerê heval-heval**
**Ferşanê, tefşok**
**Kab**
**Xar**

***Lîstikên li hundir***

**Navê**
**Girrê devan**
**Fincan**
**Gustîlk**
**Heftok**
**Reci´**
**Dam**
**Nehberk**
**Sêberk**
**Tilîqûnk**

## LÎSTIKÊN LI DERVE

### Tûş

Ev lîstik bi şev tête lîstin û hola wê gelekî fireh e; taxek (semtek) yan du tax e, gorî lihevkirinê ye. Lîstik ji ber dîwarekî “niqê” dest pê dike. Berî birra Ayê herin xwe veşêrin birra Bê kesekî beza ji nav xwe hildibijêrin û dikin bûk. Piştî qasekê birra Bê dest pê dikin gazî dikin, dibêjin: "Bûka mîra hat, hat....Qazî, miftî beledî hat, hat" û diçin bi hev re li kesên Ayê digerin. Heger çavên wan bi kesekî ji Ayê ket wê biqîrin, bêjin: Tûş û bûka wan dest pê dike baz dide vedigere “niqê”, dîwarê ko ji ber hatibû. Dema ko birra Ayê dengê Tûş dibihîsin pey bûkê dikevin, hewl didin wê, berî bigihîje dîwar bigirin. Heger birra Ayê bûk girtin ewê piwanekê bigirin û careke din herin xwe veşêrin, ya na ew ê têkevin şûna birra Bê. Heger birra Bê kirin nekirin kesek ji birra Ayê nedîtin niqteyekê winda dikin û careke din birra Ayê diherin xwe vedişêrin.

### Xeta, Malikanê, Kulî-kulî, Çolanê, Teytok

Ev lîstika ha jî navnetewî ye. Du mirov yan du birr dikarin bi xetayê bilîzin.
Awayê wê li nik me bi vî rengî bû: A û B dilîzin. A dest pê dike dilîze. Divê ji çargoşeya yekê dest pê bike, qehfikê xwe bavêje çargoşeya yekê û xwe di ser re çeng bike û bi nikilkê (li ser lingekî) here ya 2an û 3an, û paşê bi herdu piyan here 4an û 5an, 6an bi nikilkê û 7an û 8an bi herdu piyan, û bi vî awayî vegere heta 2an, rahêje qehfikê xwe, xwe di ser 1ê re çeng bike û ji xetayê derkeve. Vêca ew ê qehfikê xwe baveje 2an, qehfikê wî divê bikeve nav çargoşeyê û nere ser xetê, heger qehfik bikeve ser xetê dişewite. Dema qehfik digihîje 4an divê mirov bi nikilkê here heta 6an. Heger qehfik nekeve çargoşeyê dor dibe ya lîstikvanê din, B. Heger dor vegeriya A, ew ê dîsa qehfikê xwe bavêje çargoşeya ko tê de şewitî bû. Piştî çargoşeya 8an lîstikvan ji xetayê, ji aliyê 7an û 8an, derkeve û qehfikê xwe bavêje çargoşeya yekê, heger qehfik li çargoşeyê bikeve ew çargoşe li lîstikvanê din qedexe dibe, divê lingê wî pê nekeve.

### Hingilyo, Pilîtanê, Qîtik, Darqîtik, Çiling

Ev lîstik bi darekî mezin qasî kaşoyekî û darikekî biçûk qasî hostekê tête lîstin. Du alî dilîzin, her alîyek ji 2 ta 5-6 lîstikvanan e. Lîstik du beş e.
Beşê 1ê:
Birra Ayê li ber du kevirên biçûk dest pê dikin. Her yek ji wan darikê biçûk datîne ser herdu keviran û bi darê mezin lê dide. Birra Bê ko li holê belav dibin, hewl didin darikê biçûk li hewayê bigirin, heger girtin dê ew kesê lê xistiye bişewite û bibe dora kesekî din ji birra Ayê. Heger negirtin û darik li erdê ket ew ê yek ji birra Bê darik ji cihê ko lê ketîye bavêje herdu keviran. Heger darik bi qasî dirêjahiya darê mezin nêzî herdu keviran be ew kesê birra Ayê yê li darikê biçûk dabû dişewite. Dema kesê ji birra Bê darik davêje herdu keviran kesê birra Ayê, yê li darikê biçûk dabû li ber keviran dimîne û hewl dide ko li darikê biçûk bide (berî bikeve erdê). Heger lê da û darik bi hewayê ket û hate girtin ew ê bişewite. Heger na ew ê qonaxa(mesafeta) navbera darik û herdu keviran bipîve (Pîvan darê mezin e) û çend dar derkeve ew ji birra Ayê re weko niqte (piwan) dihesibin.
Beşê 2an:
Niqtên kîjan birrê pirtir bin ew dest pê dikin, her yek ji wan sê caran li darik didin. Ji ber herdu keviran dest pê dikin. Darik divêt ramedandî li erdê be û lîstikvan bi darê xwe li guhê darik dide ko bipengize û li hewayê ta jê bê lê bide. Mafê her lîstikvanekî heye ko sê caran mihawele bike darik ji erdê rake. Dema birra Ayê (em ê bêjin ko niqteyên birra Ayê pirtir bûn) karên xwe diqedînin birra Bê dest pê dikin ji cihê dawî yê ko darik lê ketîye, yek bi yek û ber bi herdu keviran bazdidin û bi bazdanê re dibêjin Hingilyoooooo bê ko bihna xwe berdin. Herdu birr bi hev re bi kesê bazdide re bazdidin ji bo wî kontrol bikin, ka bihna xwe berda ya na. Heger bihna xwe berda ew ê raweste û yekî din ji birra wî dewam dike. Heger birra Bê bi vî awayî gihiştin niqê (herdu keviran) bi ser dikevin û dibe dora wan ko li ber herdu keviran bin. Heger na her yek ji birra Ayê li kolîna kesekî ji birra Bê siwar dibe û dibe nik niqê.

### Qaç, Tefş, Toş

Qaç (tefş) kevirekî(berekî) pehn e, bi qasî kefa destekî ye. Beşdarên vê lîstikê bi kêmanî ji 3 lîstikvanan in. Lîstikvanek (mak) li ber gogek piçûk (ji kevir e) dimîne, ew gog di orta giroverekê de ye. Berî lîstik dest pê bike her lîsikvanek qaçê xwe ji ber gogê davêje xêzekê (xêza ku lîstikvan qaç jê davêje goga piçûk, ji xêzê ta goga biçûk heye 5-6 metr), xweyê qaçê ji xêzê herî dûr dibe mak. Piştî mak te'yîn dibe dest bi lîstikê dikin. Her yek ji lîstikvanên din qaçê xwe davêje wê goga piçûk, hewl dide ku gogê ji groverê der û dûr bixe, heger bi ser ket wê here qaçê xwe bîne û vegere paş xêzê û herweha lîstikvanên din jî diherin qaçên xwe yên ku li gogê neketibûn tînin û vedigerin paş xêzê. Vêca dema gog ji girovera xwe der dikeve ew lîstikvan ê li ber (mak) wê vedigerîne cihê wê û hewl dide lîstikvanekî bigire berî lingê xwe dayne ser qaçê xwe(yanî lîstikvanên li nav xêzê û qaç). Heger lîstikvan lingê xwe danî ser qaçê xwe nabe mak (pawanê gogê) îşê xwe jê bîne. Ew kesê lingê xwe daniye li ser qaçê xwe li hêviya gog ji grovera xwe der bikeve dimîne ji bo karibe rahêje qaçê xwe û vegere xêzê. Ew kes ê ku lingê xwe daniye li ser qaçê xwe dikare bê ku destên xwe bi kar bîne qaçê xwe dayne li ser rûyê piyê xwe û bilind bike û bi destên xwe bigire, heger qaç ji destê wî ket ya nikaribû qaç bigirta firset ji pawanê gogê re dibe ko pey keve, wî berî bigihîje xêzê bigire. Bi girtina lîstikvanekî pawanê gogê rizgar dibe û yê girtî dikeve şûna wî.

### Şepiya (goga) Qehfikan

Lîstik ji 8-11 qehfik, şepiyek (gogek, gelek caran ji paç û terîşan bû) biçûk (qasî şepiya tenîsê ye) û du birr lîstikvanan e. Xêzekê dikişînin û qehfikan datînin li ser hev. Xêz bi qasî 3-4 mitran dûrî qehfikan e. Heger birra Ayê li nik qehfikan bin ew ê Bê, yek bi yek şepiyê (gogê) bavêjin qehfikan, hewl bidin wan ji ser hev bixînin. Heger kesekî ji birra Bê qehfik nexistin ew ê herin têkevin şûna birra Ayê li ber qehfikan bimînin. Heger lîstikvanekî ji Bê qehfik bi şepiyê (gogê) ji ser hev xistin ew ê kesên Bê herin qehfikan daynin li ser hev, di vê demê de birra Ayê diherin pey şepiyê (gogê) dikevin, digirin û davêjin kesên birra Bê, û her kesek ji birra Bê şepî lê bikeve dişewite û ji lîstikê derdikeve. Heger birra Bê bikêrhatî bin û karibin qehfikan daynin li ser hev berî bişewitin bi ser dikevin û niqteyekê qazanc dikin, ya na ew ê têkevin şûna birra Ayê û bibin pawanên qehfikan.

### Ferşanê, Tefşok

Lîstikvan ji xêzikekê ferşên(qaçên) xwe davêjin pakêtn(kerton, qutî) vala yên çixaran. Pakêtan di nava girowerekê de datînin li ser hev û niqteyan(piwan) didin her pakêtekê. Vêca her pakêtek ji girowerê derdikeve niqteyên wê didin xweyê ferş.

### Eskerê heval-heval

Du birr dilîzin. Birra Ayê xwe vedişêrin û birra Bê diherin li wan digerin. Divê birra Bê hemû kesên birra Ayê bigirin ji bo bi ser kevin. Birra Ayê jî divê herin destên xwe li niqê bixin.

## LÎSTIKÊN LI HUNDIR

### Fincan

Zivistanê gundî bi vê lîstika ha li hundiran dilîzin. Du birr dilîzin. Birra Ayê 7 fincanan li ser dev li ser tebekekê datînin û gustîlkekê diêxin bin fincanekê ji wan 7 fincanan. Vêca birra Bê divê pê derêxînin ka gustîlk di bin kîjan fincanê de ye, heger cara yekê pê derêxistin hingê tebek dibe ya wan, yanî ew tebekê digerînin. Heger birra Bê rahişt fincana yekê bi mebesta gustîlkê û gustîlk ne di bin de bû deh niqte jj wan kêm dibin, lê dikarin xwe ji 10 niqteyan rizgar bikin (xwe bişon) dema karibin fincaneke din pûç bikin(bêjin ko gustîlk ne dibin wê fincanê de ye). Heger gustîlk di bin wê fincanê de derket 6 niqteyên din ji wan kêm dibin û birra Ayê ji nû ve tebekê digerîne.
Li hin deverên din bi awayekî hêsantir dilîzin. Birra Ayê 12 fincanan datînin li ser tebekê û birra Bê divê pê derxînin ka gustîlk di bin kîjan fincanê de ye, heger pê derxistin tebek dibe ya wan, ya na ew ê Birra Ayê dîsan tebekê bigerînin û niqteyekê qezenc dikin.

### Gustîlk, gustîranê

Lîstika Gustîlkê jî hema hema wekî lîstika fincanan e. Endamê her birrekê palên xwe didin dîwarekî û beramberî hevudu rûdinên. Herdu birr li hev dikin ko sonda wan bi tiştekî be(li nik me bi Sobê bû). Sond ne bi Xwedê bû ji bo sonda wan dema ne rast derkeve li wan nekeve û gunehkar nebin. Birra Ayê dest pê dikin gustîlkê li nik yekî ji birrê vedişêrin, dema vedişêrin cilikekê yan perdakê bi ser xwe de dadikin û piştî gustîlkê vedişêrin wê cilikê yan perdê davêjin. Vêca birra Bê divê pê derêxînin ka gustîlk bi kê re ye. Birra Bê dikarin yekser texmîna xwe bêjin ko gustîlk bi sobê li nik X e. Heger rast derket birra Bê niqteyekê qezenc dikin û dibe dora wan, heger na birra Ayê niqteyekê qezenc dikin û careke din gustîlkê vedişêrin. Bi awakî din birra Bê dikarin kesên birra Ayê yek bi yek pûç bikin ta kesê gustîlk pê re ye dimîne.

### Heftok, Pêncoke, Pêncokanê, Pênckevir, Delo

Kevirê lîstika Heftokê şayik, qasî xarekê biçûk e, lê ne wekî xarê girover e.
Gelek cûreyên lîstika Heftokan hene. Yek ji wan bi vî awayî ye:
Du kes bi 5 heftokan dilîzin. X dest pê dike, her pênc heftokan diêxe destekî û bi teliya mezin û ya nîşandanê heftokekê digire û davêje jor, bi avêtina wê heftokê her çarên din datîne erdê, divê heftok a li hewa berî bikeve erdê bigire. Heger ew heftok ne girt dişewite û heftokan dide Y. Ji xwe heger girt ew ê dewam bike û heftokê careke din bilind bike û bi avêtina wê re rahêje heftokekê ji her çar heftokên din û bi vî awî radihêje her çar heftokên xwe, pêşî yek û yek(bela), dido û dido(doko), sisê û yek(sêko) paşê her çar bi hev re(tepo). Paşê her pêncan bi hev re û bi her du destan davêje ser pişta destên xwe, nabe yek ji wan bikeve. Pişt re wekî destpêkê çar heftokan li erdê belav dike, tiliya nîşandanê ya destê din datîne ser ya ortê û bi tiliya mezin re kevanekî çê dike û datîne ser erdê (qilo) û yek bi yek bi avêtina heftokê ber bi jor ve heftokên din bi wî kevanî re derbas dike. Heger lîstik bê şaşî xelas kir cezayê Yê dibe Qirincok(meqesok), mîkutok û şiyatok. Y kefa destê xwe datîne erdê û X bi avêtina heftokê re qirincokekê ji pişta destê wî dide, û pişt re mîkutekî yanî bi kulma destê xwe lê dixe. şiyatok bi xwe ne ceza ye, lê piştî qirincok û mîkutan X pişta destê Yê miz dide.

### Reci`, Lîstika şivanan

Du lîstikvan dilîzin. Du rêz kortik çêdikin, her rêzek ji 9 kortikan e. 95 reci` in. Reci` kevirek biçûk, şayik û rengîn e. Cilekekê davêjin bi ser kortikan de da ku reci` gemar ne bin. Her lîstikvanek bi 45 reci`an dilîze. Pêşî 5 reci`an diêxin her kortikekê û dest pê dikin reci`an bi dorê digerînin. Heger du reci` di kortikekê de bimînin dibin para yê ku reci`an digerîne. Herweha derdê her lîstikvanekî ew e ku nehêle firseta mayîna du reci`an di kortikekê de ji ê dî re çêbibe.

### Girrê devan

Ev lîstik, wek lîstika navê a hêzê ye. Du lîstikvan xwe li ser erdê radimedînin, serê her yekî ji wan li alê linên ên din e. Her yek lingekî (eynê lingên, ê rastê yan jî ê çepê) bilind dike û herdu lingan li hev badidin. Vêca her yek hewl dide ku lingê ê din daxîne erdê.

# Devoka Botan

**Amadekar : Cemal ONURSAL**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| badan, çerx kirin, viz kirin, doş kirin, zivirandin | çevirmek | faire tourner, tordre, pivoter | to turn, to turn round, to rotate, to spin |
| behs kirin, çêl kirin, qal kirin, kad kirin, gilî kirin | bahs etmek | parler, évoquer, traiter de, mentionner | to talk (about), to mention, to treat (of subject) |
| behs: mijar | bahis | sujet, matière | topic, subject |
| bejinbûst: pot, poto, kindiz, qambihost, bejinbihost, bocî | cüce | nain | dwarf |
| berav: perav: lêva avê; beravê çem | sahil, su kenarı | rive, rivage | shore, coast, bank |
| berezava: birazava, şoşbîn | sağdıç | garçon d'honneur | bridegroom's best man |
| bersifk: | veranda | véranda | veranda |
| bûç lêdan: qoç lêdan | kafa vurmak | donner un coup de tête | To give a head-but |
| cem: ferd, cemb, ta | yükte her iki çuvaldan biri | grand sac en poils de chèvre | large goatskin bag |
| çarik: hîzar, çarşev, eba | kadın çarşaf | tchador | chador |
| çeltik: çentik, tûrik, xilîdank | kıldan yapılan ve omuza asılan çanta | sacoche en poils de chèvre | a bag made of goat hair |
| çikilandin: çikandin, nikandin | dikmek | planter | to plant |
| çîçûk: çêlik, çêçik | civciv | poussin | chick |
| çîk: çîk dan, çîk ket lingê min | kısa süren yoğun sızı | douleur vive de courte durée | acute but short-lasting pain |
| çilêçilê: pelçimok; pîrçemek, pêrçenk, perçemûk, şevşevoh, şebşebk, baçîmêlk, şevrevîng, çekçekûle, balçêmk, şibşibêlok, şebşebotk, pêçermik, , pêlçemek, şevekur, şivînek, pelsînik, pêrcemk, perçem, boçermik, şebpare, bêrçenk, baçermok, balçermok, çil, çîlî, çîlî çîlî | yarasa | chauve-souris | bat (animal) |
| dayin | dadı | nourrice | child's nurse |
| dehfik: dafik, reşbend | kuş tuzağı | piège à oiseaux | bird-trap |
| deng dan: deng vedan, alan dan, vebeyîn | yankı vermek, yankılanmak | résonner | to echo;  to resound |
| dêşîr | süt anası | mère de lait, femme qui allaite un bébé qui n'est pas le sien | wet nurse |
| dil bûrin: dil bihurîn, dil xewrîn, ji xwe veçûn, dil xerbilîn, dil ji bîr çûn | baygınlık geçirmek | défaillir, se sentir mal | to feel faint, to be overcome |
| dimûhr: peşkreş | uğursuz | qui portemalheur, oiseau de malheur | ill-omened, inauspicious |
| ecûze: ecûzpîr, pîrasêr, pîrebok, cadû, cazû, pîrhevî | cadı | sorcière | witch |
| fihêt: şerm,, fedî, eyb fehêt, heya | utamç | honte | shame, bashfulness |
| fiş: fişe, tewş | abes, nafile, saçma | vain, futile, absurde | futile, vain, absurd |
| fit dan, sîr dan, fitne dadan, pînc kirin, nav lêdan, gijgijandin | kışkırtmak, tahrik etmek, | exciter, inciter, instiguer | to instigate, to excite, to incite or plot |
| fitîl: petîl, pilte, pilta | fitil | mèche | wick |
| girgire: giregir | ileri gelenler | notables, personnages importants | leading citizens, important public figures |
| girş: kêran | kiriş | poutre | beam |
| gulîvank: gulifank: kelef, gac, peng, penge | iplik çilesi | écheveau | hank, skein (of thread) |
| gûvik: kovik | huni | entonnoir | funnel |
| haval: heval | arkadaş, yoldaş | camarade, ami, compagnon | comrade, friend, companion |
| hogir | can arkadaşı, kafadar, yakın dost | ami intime, copain | intimate friend, like-minded person |
| helandin: buhujandin | ertimek, çözmek | faire fondre, dissoudre | melt, dissolve |
| helîn: buhujîn | erimek, çözülmek | fondre, se dissoudre | to melt, to dissolve, to melt down |
| heskû: hesk | kepçe | louche | ladle |
| hewdel: hevdal | bulamaç | bouillie à base de farine et de raisiné à l'usage des parturientes | thick porridge made with flour, butter and syrup or raisins |
| heyf: tole | intikam, öc | vengeance | vengeance |
| hinda kirin: winda kirin, berze kirin | kaybetmek, yitirmek | perdre | to lose |
| hinda bîn: winda bûn, berze bûn | kaybolmak | se perdre, être perdu | to get lost |
| hinne: xena, hene | kına | henné | henna |
| hîlet: taqet | takat | force, énergie | strength, energy |
| hûsandin: hêsan kirin, sûn, tûj kirin | bilemek | aiguiser, affûter | to sharpen, whet, grind |
| jinbî : jinebî | dul kadın | veuve | widow |
| jirmam: jinmam | amca karısı | la femme de l'oncle paternel | wife of paternal uncle |
| jixal: jinxal | dayı karısı | la femme de l'oncle maternel | wife of maternal uncle |
| kadik | peynirli pide | pain fourré au fromage | bread stuffed with cheese |
| keçxal: keçxaletî | dayı kızı | cousine, fille de l'oncle maternel | maternal uncle's daughter |
| kincik: potir, paç, kincir | bez parçası | pièce de toile, de tissu | piece of material, of cloth |
| kitik: pişîk, kêtik, pisîng, pişîle | kedi | chat | cat |
| kurh: kûre | ateş ocağı | four, fournaise | furnace, oven |
| kurha vira: kûra viran | yalan küpü | bonimenteur,  qui ment comme il respire, mythomane | pathological liar |
| kûx: kokel | ağıl | cabane, hutte | hut, cabin, shed |
| kuleh: kulî | çekirge | sauterelle | grasshopper |
| kûlîk: holik, kepr | çardak | treille, tone | trellis, bower |
| kundê kûr: kundû kor, bûm, kund | baykuş | hibou, chouette, duc | owl |
| liqayê hev hatin: rastî hev hatin, pêrgî hev hatin, li semta hev hatin, bi ser hilbûn | karşılaşmak | rencontrer qn, croiser | to meet (s.o.), to encounter |
| maldemayî: dimaldemayî; keça dimaldemayî | evde kalmuş (kız) | vieille fille: qui n'a pu quitter le foyer paternel | spinster ;  old maid |
| malxezur: malxezûr, xezûran | kayınğiller | belle-famille; les parents de l'épouse | in-laws, wife's parents |
| mastê keyandî: dewê kilayê, dewê keyandî | yayık yoğurdu | petit-lait de baratte | butter-milk |
| meqeş: kefgîr | kevgir | écumoire | skimmer, perforated ladle |
| meşrebe: avkîne, parç, şemşaq, sirahi | sürahi | carafe | decanter |
| metqeb: xişab | matkab | perceuse | drill , auger |
| nalîn, nalenal kirin | inlemek | gémir | to moan, to groan |
| nesil: nifş, cîl | kuşak, nesil | génération | generation |
| pêçandin: pêçan | sarmak | emballer, rouler, emmailloter, envelopper | to wrap up, to bandage, to swaddle |
| alandin: lefandin | dolamak | enrouler, entourer, ceindre | to wind, to wrap around, to roll up |
| alîn: liyan, lefîn, ji kê reviyam, lê aliyam | dolanmak | s'enrouler, s'enlacer, éteindre, prendre dans ses bras | to hug, to clasp, to take into one's arms |
| pê êxistin: pêxistin, vêxistin, hil kirin | yakmak, tutuş turmak | allumer | to light (lamp, fire, pipe) |
| pê guhartin: tiştek bi tiştek din guhartin | değiş tokuş etmek | troquer, échanger | to barter, to exchange |
| pirtik | kuş tüyü | plume | feather |
| puşî: pêşî: mimisk | sivri sinek | moustique | mosquito |
| qazid: qasid: peyamber | elçi, mesaj götüren | messager | messenger |
| qazûqeder: keskesor, heftreng | kuşağı | are-en-ciel | rainbow |
| qedemge: daşir, edebxane, destavxane, avrêjxane, avdestxane, çolik | yüznumara, tualet | toilettes, w.c. | toilets, rest room, w.c. |
| qehirîn: xemgîn bûn | üzülmek | éprouvrer de la peine, avoir du chagrin, être triste | to be sorry, to feel sorry |
| qereşanî | duvak | voile nuptial, voile de la mariée | bride's veil |
| qevastin: qebastin | atlamak | sauter, passer au-dessus de | to jump, to skip, to pass over |
| qirçandin | çatırdatmak | faire craquer | to be irresistible |
| qupçe: bişkok, bişkoj, kespir, qumçe, bişkote | düğme | bouton | button |
| qûbqab: qabqab | takunya | sabot (chaussure en bois) | a clog |
| qûçxane: qûşxane, quşxane | tencere | casserole | saucepan |
| razan: nivistin, raketan, ramedan, xew kirin | uyumak | dormir | to sleep |
| razandin | uyutmak | faire dormir | put to sleep |
| recifîn: ricifîn, rihilîn | titremek, titreşmek | trembler, frissonner, tressaillir | to tremble, to shiver, to quake |
| rewde: kom, birr, qefle | küme, gurup | groupe, bande, nuée | group, gang, host |
| rêkirin: bi rê kirin, verêkirin, şandin, hinartin | göndermek, yollamak | envoyer, expédier | to send |
| rihsivik: cansivik, xwînsivik | tezcanlı | agile, vif | agile, nimble |
| risasî: zirincî, qirşûnî | kurşun rengi, kurşuni | gris, gris de plomb | lead colored, gray |

# Ferhenga partî-kurdî (II)

**Amadekar: Behroz ŞUCAÎ**

| partî | kurdî | tirkî | fransizî | ingîlîzî |
|---|---|---|---|---|
| çar | çar, çare | çare, çözüm | solution, remède | solution, remedy |
| çefar | çar | dört | quatre | four |
| çefardes | çardeh | ondört | quatorze | fourteen |
| çeman | zeman | zaman | temps | hour, time |
| çer | çer-; çêr- | ot ; otlamak | paître | graze |
| çeraẍ | çire, çira | çıra | lampe | lamp |
| çewaẍan | çawan | nasıl | comment | how |
| çuhrbad | çarpê | dört ayaklı | quadripède, animal | quadruped, animal |
| çwend, çond | çend | kaç, ne kadar | combien, quelques | as much as, how many |
| çihreg | çihre, çehre | çehre, yüz | face, apparence | face, appearance |
| çîn- | çin- | biçmek, derlemek | collecter, recueillir | collect, gather, pick |
| çiş | çîk, çişt, tişt | şey | chose | thing |
| çuhrom | çarem | dördüncü | quatrième | fourth |
| dadwar | dadwer | yargıç | juge | judge |
| dameg | davik, dave, dav | tuzak | trappe | trap, snare |
| dendan | dindan, diran, didan | diş | dent | tooth |
| derd | derd | dert | peine, souffrance | pain, suffering |
| drafş | direfş, direwş | bayrak, sancak | bannière, drapeau | banner, flag |
| derẍ | dirêj, derx | uzun | long | long |
| droẍ | direw, derew, dro | yalan | mensonge | lie, deceit |
| druşt | ≠ durust, dirust | hepsi, tam, iyi | tout, bien | whole, well |
| draxt | drext, dar | ağaç | arbre | tree |
| des | deh (dimilkî: des) | on | dix | ten |
| desom | dehem (dimilkî: desim) | onuncu | dixième | tenth |
| deşt | deşt | ova, çöl | plaine, désert | plain, desert |
| dwades | diwazdeh, dozdeh | on iki | douze | twelve |
| dûd | dû | duman | fumée | smoke |
| dojex | dojeh, dûzex | cehennem | enfer | hell |
| dûr | dûr | uzak | loin | far |
| dîdem | dîdem | taç | guirlande | crown of flowers, garland |
| dijwar | dijwar | güç, zor, güçlük | difficile, difficulté | harsh, hardship |
| dêm | dêm | yüz | face | face |
| dên | dîn | din | religion | religion |
| dênawer | dîndar, dînwer | dindar | religieux, croyant | religious, devout |
| dêw | dêw | dev | demon | demon |
| ferrax | fireh | geniş | large, vaste | broad, spacious |
| fremon | ferman | ferman | ordre, injonction | command, unjunction |
| frêşteg | firişte, firiştex | melek | apôtre, ange | apostle, angel |
| gendag | gend, genî | kokuşmuş | pourri, putréfié | stinking, foul |
| gund | ≠gund | ordu, ordugah | armée, camp militaire | army, army camp |
| gyang | giyan, can | ruh | âme | soul |
| gyanwar | giyanwer | ruhlu, canlı | vivant | soul-possessing, living creature |
| gêhan | cîhan | dünya | monde | world |
| girw- | gir- | tutmak | prendre, saisir | take, seize, grasp |
| gezn | gence, gezn, xizne | hazine | trésor | treasure |
| hembend | hembend | hapishane arkadaşı | compagnon de prison | fellow captive |
| hem | hem, hev | ortak | com— | —mate |
| hencam | encam | bitirmek, tamamlamak | finir, complèter | finish, complete, fulfill |
| hrê | dimilkî: hirê | üç | trois | three |
| huner | huner | marifet, beceri | talent, vertu | virtue, skill |
| hişt | hişt | bırak | laissé | left (past of leave) |
| jehr | jehr | zehir | poison | poison |
| jehrên | jehrîn, jehrî | zehirli | empoisonné | poisonous |
| jeman | zeman | zeman | temps, heure | time, hour |
| jen | jin | kadın | femme | woman |
| jîr | jîr | akıllı, zeki | intelligent, sage | intelligent, wise |
| jîrîft | jîrî, jîrtî | zeka, zekilik | sagesse, intelligence | wisdom, intelligence |
| jîwehr | jiyan, jîn | hayat | vie | life |
| kar | kar | iş | travail, acte | work, deed |
| karwan | karwan | kervan | armée en marche, armée | army on the march, army |
| kedeg | ke- (kebanî) | ev | maison | house |
| kehrêz | karêz | kanalizasyon | canalisation | underground channel |
| kenîg | keç, (dimilkî) keynek | kız | fille, mademoiselle | girl, maiden |
| kedixweday | kedxweda | ev sahibi | maître de maison | master of the house |
| kuşt | kuşt | öldürdü | a tué | has killed |
| kên | kîn | kin | vengeance, revanche | vengeance, revenge |
| kîşer | kişver | bölge, ülke | région du monde | region of the world |
| lerz | lerz- | titremek | trembler | tremble |
| mah | meh | ay | mois | month |
| man | mîn- | kalmak | rester | remain, stay, dwell |
| masyag | masî | balık | poisson | fish |
| merd | mêr | erkek | homme | man |
| merdohm | meriv | insan, halk | peuple, gens, humanité | mankind, men, people, humanity |
| merẍ | mêrg | çayır | prairie | meadow |

| partî | kurdî | tirkî | fransizî | ingîlîzî |
|---|---|---|---|---|
| meren | mirin | ölmek | mourir | to die |
| mes | mezin | büyük | grand | great |
| mesader | mestir, mezintir | daha büyük | plus grand, plus âgé | greater, older |
| mest | mest | sarhoş | ivre, intoxiqué | drunk, intoxicated |
| muhr | muhr, mohr, mor | mühor | sceau | seal |
| muhreg | movik | omur | vertèbre | vertebra |
| mujdeg | mizgînî | müjde | bonne nouvelle, message | good news, message |
| murẍ | mirîşk | kuş | oiseau | bird |
| murẍarîd | mirwarî, mirarî | inci | perle | pearl |
| mey | mey | şarap | vin | wine |
| mêẍ | mij | sis | brouillard | mist |
| mêhman | mêhvan, mêvan | konuk, miafir | hôte | guest |
| mihrban | mihriban | rahman, merhametli | clément | kind, kindly |
| mêş | mêşin | koyun | mouton | sheep |
| mêx | mîx, mix | çivi | clou | nail, rivet |
| nafeg | nav, navik | orta, merkez | centre, milieu | centre, middle |
| nam | nav | ad | nom | name |
| naz | naz | naz | plaisir, désir | pleasure, delight |
| nazag | nazag, nazik | nazlı | grâcieuse, délicate | graceful, delicate |
| niẍad | niyaz | dua, dilek | prière, obéissance | prayer, obedience |
| nigar | nîgar | nakışlamak, resimlemek | peindre, dessiner | paint, draw |
| naẍn | nan | ekmek | pain | bread |
| nehum | nehim, nehem | dokuzuncu | neuvième | ninth |
| nemaj | nimêj, nivêj | namaz | obéissance | obedience |
| nimay | nimîn- | gösterme | montrer, démontrer, manifester | show, demonstrate |
| ner | nêr | eril, erkek | mâle | male |
| newag | niwa, newa | hava, melodi | mélodie, air | melody, tune |
| noxzad | nûza | yeni doğmuş çocuk | nouveau-né | newborn |
| nêmroj | nîvroj, nîvro | güney | sud | south |
| nîşan | nîşan | işaret, nişan, sancak | bannière, signe | banner, sign |
| pad | pê | ayak | pied | foot |
| pedẍirw- | pejir-(andin) | kabul etmek, almak | accepter, recevoir, prendre | accept, take, receive |
| pedîj | dij | karşı, zıt | contre, opposé | opposed to, against |
| pedixşah- | padişah | padişah | ayant le pouvoir, qui règne | have power, rule, reign |
| pedwend | pêbend, pêwend, peywend | bağ, ilişki | lien, connection, attache | connexion, clamp |
| penc | pênc | beş | cinq | five |
| perjar | =perjîn, pejan, perja, perçîn, pêjan (=sênc) | yasak | prohibition | prohibition |
| perwerz | perwerî | besleme | nourriture | nourishment, food, nurture |
| peryaj | pîroz | zafer | victoire | victory |
| peş | paş | sonra | après | after, then |
| peşêman | poşman, peşîman | pişman | pénitent | penitent, regretful |
| pewaj | paqij, pakij | temizlemek | purifier | purify |
| pewag | pak | temîz, pak | pure, sacré, saint | pure, holy |
| pur | pir | çok | beaucoup, totalement | much, very, completely, wholly |
| pîl | fîl, (dimilkî: pîl) | fil | éléphant | elephant |
| pilleg | pille, pîlekan, pêlekan | basamak | autel | stepped altar, altar |
| pêş | pêş | ön | avant | before |
| ruwan | rewan | ruh | âme | soul |
| robas | rovî | tilki | renard | fox |
| roj | roj | gün | jour | day |
| rojanîg | rojanî | nurani | lumineux | luminous, bright-faced |
| rojeg | rojî | oruç | jeûne | fast-day, fast |
| roşn | roşn, rohnî, ronahî | parlak, ışıklı | brillant, lumineux | bright, brillant |
| roşnîft | rohnî, ronahî | ışık | lumière | light |
| rêxt | rêht, rêt | döktü | versé | poured |
| saj | saz | yapmak, kurmak, hazırlamak | préparer, faire | prepare, make |
| sed | sed | yüz | cent | hundred |
| safsêr | şimşîr, şûr, simşêr | kılıç | épée | sword |
| snaj | ajne | yüzmek | nager | swim |
| ser | ser | yüz, üst | tête, dessus | head, above |
| sray | strê— | türkü söylemek | chanter | sing |
| serheng | serheng | önder, kaptan | leader, capitaine | leader, captain |
| srod | sirûd | şarkı, marş | chant, hymne | song, hymn |
| suxreg | sor, suhr, sur | kırmızı | pourpre | purple |
| sext | sext | sıkı | comprimé, dur | compressed, pressed |
| sisteg | ≠sist | kırılmış | brisé | broken |
| sêweg | sêwî | öksüz | orphelin | orphan |

# Stranên folklorî

**Amadekar : M. Emîn NAROZÎ**
**Mahmûd LEWENDÎ**

*Ji strana Gewre Xatûnê Ev stran di sala 1993 an de ji aliyê dengbêjekî hêla Midyadê, aliyê Torê ve, hatiye gotin.*

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| a : belê, erê, e | evet | oui | yes |
| bera: bila, bira | | que | which ; that |
| berbûrîk; berbûdî, berbûrî, berbûkî | (1) dügun esnasında geline refakat eden ve aynı zamanda ona danışmanlık yapan yaşlı kadın; 2) damadın evinde gelinin ilk duvağı açıldığında erkek çocuğu olması dileğiyle gelinin kucağına oturtulan erkek çocuk | 1) dame accompagnant la mariée pendant les festivités de mariage et lui servant de conseillère; 2) garçonnet que l'on fait asseoir sur le genou de la mariée chez le marié avec le souhait qu'elle mette au monde un garçon | 1) matron of honour (the bride's advisor during the ceremonies); 2) small boy placed on the bride's kneess upon her arrival the bridegroom's home with the hope that she will bear a son |
| bergîl: bergîr, bargîr | beygir | cheval de trait, cheval de labour | packhorse |
| benzîn: benzînk, binzîn | at eğerinin altına serilen örtü | couverture qu'on met sur le dos du cheval sous la selle | saddle cloth |
| beş | alnının bir kısmı asıl renkten farklı olarak beyaz olan | animal qui a une tache blanche sur le front | an animal with a white mark on its forehead |
| bêzirav | ödlek, korkak | poltron, lâche | coward |
| bi ser de girtin | baskın yapmak, hücum etmek | surprendre, faire un raid | surprise ; make a sudden raid |
| bi xaranî: bi xaran | süratle, hızla | à toute vitesse | at full speed, quickly |
| bi xweşkayî: bi xweşikî, bi xweşî | güzellikle, hoşlukla | gentiment, poliment, sans violence, en douceur | gently, politely |
| bitir: gewî, betran | şımarık, küstah | gâté, insolent | spoiled, insolent |
| çal: hespê ku çend pêyên wî spî ne, hespê çal | alaca; elleri ve ayakları beyaz olan at | cheval qui a des pieds blancs | horse with white socks |
| çapa dev: qeysa dev | ağız ölçüsü, ağız genişliği, hacmı | largeur de la bouche, béance de la bouche | wide mouthed |
| celew: lixab, lixav, rişme | yular | bride | halter ; bridle |
| ciwanîk: canî, cahnî, ciwanî | tay | poulain, pouliche | foal |
| dahm: dam, tern, teng, şûn, cîh | yer | place, lieu | place, spot |
| dalî: diyarî, hafa | huzuruna, karşısına | en face de, en vue de | in the front of, in view of |
| darrim: darê rimê | kargı sapı | manche de lance | shaft of spear or lance |
| dayî | verilmiş, sözlü kız | promise, fiancée | fiancé, betrothed (fem) |
| destûrdayî | izinli, müsadeli, icazeli | qui a la permission, autorisé | authorised, who has permission |
| haho: eman | aman, vay | de grâce ! au secours ! oh là ! | mercy ! help ! |
| halo: wilo, weha | öyle, böyle, şöyle | ainsi | so ; thus |
| heçî: herçî | ise, gelince | quant à, en ce qui concerne | as for |
| hêde: bise, raweste | bir dur, dur, bekle | attends, un instant | wait a minute |
| hesanî: hêsanî, asanî, rehetî | kolaylık | facilité | facility ; ease |
| bi hesanî | kolaylıkla | facilement, aisément | easily |
| hinês: henese, nefes | soluk, nefes | souffle, expiration | breath |
| hor: horehor, navtêdan | kışkırtma | incitation | incitement |
| indeko: endeko | kokulu bir yonca türü | variété de mélilot | variety of balm |
| ji xewê hilşenîn | uykudan sıçramak | sursauter, se réveiller brusquement | jump ; wake up with a start ; |
| kêra rimê | kargı ucu, mızrak ucu | lame de lance, tête de lance | spearhead or lancehead |
| lawik: kilam, stran | ezgi, aşk ezgisi | chanson, chanson d'amour | song, love song |
| livîn: lebitîn | kımıldamak, hareket etmek | bouger, se mouvoir | to move ; to get moving |
| livandin: lebitandin | kımıldatmak, hareket ettirmek | mouvoir, faire bouger | to get s.o. moving |
| nefes jenîn | kalbi atmak, nefes alıp vermek | battre (le coeur), respirer | to beat (a heart) ; to breathe |
| hewandin: (bihewîne!) | 1) barındırmak, yerleştirmek; 2) yatıştırmak | 1) abriter, héberger; 2) calmer, tranquilliser | 1) to shelter , to lodge s.o. ; 2) to calm ; to set at ease |
| hewîn (bihewe) | 1) barınmak, yerleşmek, durmak; rahat etmek, rahat durmak | 1) s'abriter, être hébergé; 2) se calmer, s'arrêter | 1) to take shelter ; to be lodged ; 2) to calm oneself ; to stop oneself |
| hewî, hewînî, hewtî | sabır | patience | patience |
| hewiya min nayê | sabır edemiyorum, sıkılıyorum | je m'ennuie | I am bored |
| pêbelûk, pêbabûlk: zengî, zengo, rikêb | üzengi | étrier | stirrup |
| pelik nan: perçeyek nanê sêlê | bir parça saç ekmeği | un morceau de pain | a piece of bread |

# Penîr

**Amadekar : EIÎŞÊR**

Berî ku em behsa cureyên penîr bikin, ez dixwazim di vî warî de bi awayekî gelemperî behsa çend noqteyan bikim.
Li vir, em cureyên penîr ên ku em ê behis bikin, ew cure ne ku di civata kurdî ya klasîk de hatine çêkirin û niha jî gelek cureyên wan tên dîtin. Îro îhtîmal e ku li gor pêşveçûna teknîkê û guherîna civatê hin cureyên din jî bên çêkirin, lê di dereceya yekê de ew ji me re ne ewqasî girîng in. Ji ber ku îhtîmala windabûna navê wan û awayê çêkirina wan ne di xeterê de ne.
Li piraniya navçeyên Serhedê û gelek ciyên din ên Kurdistanê, penîr li gor pincar an giyayê ku dikin navê, tê bi nav kirin. Li hinek ciyan jî li gor helandin an şikil û biçimdanê nav lê tê kirin. Ji bilî van, ew li gor şîrê tê bikaranîn jî tê bi nav kirin. Penîrê herî normal ji şîrê biharê tê çêkirin. Ji ber ku şîrê biharê kêmrûn e. Ji şîrê madekan penîr nayê çêkirin, ji ber ku gelek têrrûn e û ne ekonomîk e jî.
Penîr ji şîrê nîvgermokî tê çêkirin. Şîrê bê kelandin hêvînê nagire. Li gelek ciyan dema ku şîr tê dotin, di eynî esnayî de tê hêvîn kirin. Ji ber ku germaya şîrê nû hatî dotin têra hêvîngirtina wî dike.
Ji bo penîrçêkirinê malzemeyên pêwîst ev in :
**1) Şîr :** ji hemû cureyên şîr penîr çêdibe. Em ê li xwarê lib û lib behsa kalîteya penîrê ku ji kîjan şîrî çêdibe bikin.
**2) Hêvîn :** berî ku li dermanxaneyan hêvînên hazir hebin, ew li malan dihatin çêkirin. Ew melzemeyên ji bo çêkirina hêvînê tê bi kar anîn ev in :
**Paç** an **dîzik :** mezinahiya wê li gor mîqtarê hêvîna bê çêkirin. Em ê li vir ji bo pîvanê paça du lîtreyî bi kar bînin.
**Firişk :** firişka berxên sava yên hê giya tam nekiribin. Firişka wan tê derxistin û hişk kirin û ew heta dema pernîrçêkirinê tê parastin. Li gor pîvana me ya jorê, pêwîstî bi du firişkan heye.
**Şeba spî :** kevçikekî xwarinê.
**Xwêya lîmonê :** kevçikekî xwarinê.
**Hejîr :** Hewce ye bê perçiqandin û pişt re têkin navê. Sê lib.
**Şekir :** sê kevçikên xwarinê.
Ev melzemeyên han hemû bi hev re dikin nav dîzekê yan paçekê ku ji axê hatibe çikirin. Piştî du hefteyan xwelêgirtinê, ji vê melzemeyê hêvîn çêdibe. Pîvana bikaranîna hêvînê jî ev e : ji bo tenekeyek şîr çar kevçikên xwarinê hêvîn tê bi kar nanîn. Dema ku hêvîna di paçik an dîzkê de kêm be, em bêjin nîvê wê bê bi kar anîn, êdî hewce nake mirov melzemeyên ku me li jorê behsa wan kirin, bi kar bîne, tenê mirov ava penîr li ser zêde dike. Yanî ew ava ku li ser penîrê hêvînkirî berhev dibe, tê bikaranîn.
**3) Parzon :** Ji perçeyê wek laçikan tenik tê çêkirin. Parzonên mezin ji sê çar mêtroyan û yên piçûkên adetî jî ji mêtroyekê çêdibe.
**4) Pîncar** an **giya**yê mirov bixwaze têke navê.
**5) Sel**ên fireh û mezin ên ku li ser parzonan tê danîn û kêrî palandina penîr tên.
**6) Xwê**.
**7) 'Eyar, paç** an **dîzik**ên ji axê çêkirî. Li hinek ciyan ji van paç an dizîkan re *kiviyên penîr* jî tê gotin...





| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| hêvîn, hevên, havên, heyvan, maye | maya | levure | yeast, leaven |
| firişk: firşik, firşk: mada berxikê ku hê giya newariye ye, ziwa dikin; firişkek têra çêkirina lîtreyek hêvîn dike | daha otlanacak yaşa gelmemiş oğlakın midesi, kurutulup maya yapmada kullanılır; bir tanesinden bir litre maya elde edilir | estomac d'un agnelet qui n'est pas encore en âge de paître qu'on fait sécher et qu'on utilise dans la fabrication de la levure; 1 estomac suffit pour la fabrication d'un litre de levure. Dans certaines régions on utilise à sa place de la caillette (şîlav) | the stomach of an unweaned lamb that is dried and used to make yeast. 1 stomach makes a litre of yeast. In some regions renet is used instead. |
| parzon: parzûn, parzin | peynirın içine konup süzüldüğü ince tülbendimsi bez | tissu en coton dans lequel on met le fromage pour l'égoutter | cloth in zhich cheese is put tostrain it |
| sel: ferş : teht | yassı ve geniş taş | dalle de pierre | paving stone |
| cureyên penîr | peynir çeşitleri | variétés de fromage | type of cheese |
| penîrê bi sîrik | otlu peynir | fromage avec de la ciboulette | cheese with chives |
| penîrê bi bêpincar : penîrê spî | beyaz peynir | fromage sans herbe | cheese without herbs |
| penîrê bê îman : penîrê bê adan: penîrê tilore, penîrê rijî ; penîrê bê rûn | yağı alınmış sütten yapılan peynir | fromage fait de lait écrémé | cheese made with skimmed milk |
| penîrê miyan: ev cure penîr yê herî normal û adetî ye | koyun peyniri | fromage de brebis | ewe's milk cheese |
| penîrê bizinan: kalîte û qîmeta wê kêmtir e | keçi peyniri | fromage de chèvre | goat's milk cheese |
| penîrê çêlekan: kalîte û qîmeta wê ji ya bizinan jî kêmtir e | sığır peyniri | fromage de vache | cow's milk cheese |
| penîrê helandî | eritilmiş peynir | fromage fondu | melted cheese |
| penîrê kezî : penîrê hûnayî ; penîrê badayî, penîrê rîçal | örgü peynir | fromage de brebis façonné en forme de tresse | ewe's milk cheese shaped like a plait |
| penîrê helandî yê lûleyî | lüle peynir | fromage de brebis façonné en forme de tube | ewe's milk cheese shaped into block |
| jajî : torak; ji dew tê çêkirin. Pêşî dew dikelînin, pişt re dikin çewal an telîsên taybetî û pê dipalînin. Jajî xwarina kes an aîleyên feqîr e. Piranî, dema ku penîr dikin paç an 'eyaran ji bo şidandina wê bi kar tînin. | bir tür çökelek | petit lait égoutté consommé à la place du fromage par des indigents | yoghurt drained and eated instead of cheese by the very poor |
| penîrê bi bitim : ev cure penîr yê han, zêdetir ji bo payîza ewil tê çêkirin û demeke dirêj nayê parastin. Bitimê hê liba wê neşidayî tê bi kar anîn. Gelek caran sê pay bitim û payek penîr û hinek caran jî nîv behr bitim û nîv behr jî penîr tê bi kar anîn. | bıtımlı peynir sonbaharda yapılır ve uzun süre saklanmaz | fromage au lentisque préparé début automne il ne se conserve pas longtemps | resinated cheese made in autumn zhich keeps a long time |
| penîrê bi kereng (kengir) | kengerli peynir | fromage au chardon | cheese with thistle |

*penîrê bi stirk : pincarek ji cisnê pîvazê ye. penîrê bi mendê (mendik)penîrê bi çavhêşîn. penîrê bi heliz. penîrê bi bîk : pincarek ji cisnê helizê ye. penîrê bi çevir : ev pincar jî ji cisnê helizê ye. penîrê bi siyabo. penîrê bi şexmo : şexmo navê nêriya nêrebendê ye. penîrê bêza :ji nêriya vê pincarê çêdibe, gelek xweş û bi qîmet e. Ji ber ku nêriya wê zêde bi dest nakeve.*

# Nîşanên trafîkê

**Amadekar : Rojan HAZIM**

| kurdî | tirkî | fransizî | ingilîzî |
|---|---|---|---|
| bariyer | bariyer | barrière | barrier |
| wergeryan, wergerîn, qelibîn | devrilmek | se renverser | turn turtle; roll over |
| xaçeya zivirokî | dönüşlü kavşak | carrefour sens giratoire | roundabout |
| derbasgeha rêya hesini ya bi bariyer | kontröllü demir yolu geçidi | passage à niveau surveillé | level crossing with gates |
| derbasgeha rêya hesinî ya bê bariyer | kontrolüz demir yolu geçidi | passage à niveau non surveillé | unsupervised level crossing |
| derbasgeha rêya hesinî ya yekxetî | tekhatlı kontrolsüz demiryolu geçidi | passage à niveau à une voie | single-track level crossing |
| derbasgeha rêya hesinî ya pirxetî | çok hatlı kontrolsüz demiryolu geçidi | passage à niveau à voies multiples | multi-track level crossing |
| tunel tünel | tunnel | tunnel | |
| nezivire rastê | sağa dönülmez | interdiction de tourner à droite | no right turn |
| nezivire çepê | sola dönülmez | interdiction de tourner à gauche | no left turn |
| U–kî nezivire | U dönüşü yapılmaz | interdiction de faire demi-tour | no U-turn |
| tûtûk klakson, korna | avertisseur, klaxon | hooter; klaxon; horn | |
| leza bilindtirîn | azami sürat | vitesse maximum autorisée | maximum speed |
| otorê diqede | otoyol bitiyor | fin d'autoroute | end of motorway |
| raweste | dur | stop | stop |
| rê bide | yol ver | cédez le passage | give way |
| rê nîne | taşıt giremez | passage interdit, sens interdit | no entry; one way |
| jê derbasbûn qedexe ye | öndeki taşıtı geçmek yasaktır | interdiction de doubler | no overtaking |
| rêya şemitok | kaygan yol | chaussée glissante | slippery road |
| hişyar be ! | dikkat ! | attention ! | attention! |


Xaçerêya zivirokî


Derbasgeha rêya hesinî ya bi bariyer


Derbasgeha rêya hesinî bê bariyer


Nezivire rastê


Nezivire çepê


U-kî nezivire


Otorê diqede


Tûtûk qedexe ye



Leza bilindtirîn


Jê derbasbûn qedexe ye


Rê nîne



Raweste


Tunel


Ba heye


Rê bide


Rêya şemitok


Girkerê (Kasisli yol)


Hişyar be !


Rêya du alî


Balefirgeh

**KURMANCÎ**
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du bulletinde laison et d'information N° C.P. : 65913 A.S.
© INSTITUT KURDE DE PARIS
106, rue La Fayette, 75010 Paris - France
*www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN**
*Réalisation :* **S. ILITCH & M. HASSAN**

